

11 مەهاباد

# لە گسکدانەوە بووە سەرمایەدار

Encama 2. Tîrûpişka Rûdawê diyar bû

## Kurdekî ji Anatolya Navîn wê belaş bifirê Kurdistanê

2



Hejmar / Nr. 135
23 Sibat / Februar 2012

# Rûdaw

ÇAPA EWROPA

Rojnameya Kurdên Diyaspora

**Deutschland 1,50 Euro** | Österreich 1,50 | Belgium 1,50 Euro | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Norway 15 NOK | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK

# BOYKOT



Esad hewl dide li Sûriyê bi "destûreke nû" gel bixapîne, Ehmedînejad jî ji bo hilbijartinên Parlementoya Îranê hemû berendamên Kurd yên ne alîgirên rejîmê ji lîsteyan derxistin. Lê Kurdên Rojava û Rojhilatê Kurdistanê wê nerin ser sindoqên dengdanê.

4/5



## Xwe êdî li Norwêcê ewle nabînê:

## Mele Kirêkar dixwaze biçe Somalyayê

2

**Encama 2. Tîrûpişka Rûdawê diyar bû**

# Bilêta Kurdistanê ji bo Kurdekî Anatolya Navîn derket



Nuh Ateş ligel hevjîna xwe li ser sûrên Amedê

**Koln (Rûdaw) -** Tîrûpişka duyemîn a rojnameya Rûdawê hat kişandin û Kurdekî ji Almanyayê bilêtek firokeyê ji bo Kurdistanê qezenc kir. Vê carê nivîskar û rewşenbîrê kurd Nuh Ateş bilêta firokeyê bo Kurdistanê qezenc kir. Pîroz be.

Tîrûpişka duyem roja 15ê Sibatê 2012 li navenda Rûdawê ya Kolnê hat kişandin û di encamê de Kurdekî rûniştvanê bajarê Almanya Mainzê bilêta firokeyê ji bo Kurdistanê qezenc kir. Nuh Ateş wê bi xwe biryarê bide ka ewê bilêta Amedê an Hewlêrê wergirê. Nuh Ateş (64) Kurdekî ji Anatoliya Navîn e û li Konyayê hatiye dinyayê, ew ji sala 1970î ve li Almanyayê dijî. Nuh Ateş yekemcar beriya du salan çûye Kurdistanê, ew carekê çûye Bakur û carekê jî çûye Başûrê Kurdistanê. Nuh Ateş piştî bihîstina qezenckirina bilêta firokeyê ji bo Kurdistanê kêfxweşiya xwe anî ziman û got ku dibe ew vê carê herê Bakur anjî Başûrê Kurdistanê û ji wir serdana beşê din jî bike.

Nuh Ateş rewşenbîrekî kurd e û di gellek malper û kovarên kurdî de nivîs û lekolînên wî derdikevin. Ateş bi salan weke memûr di Wezareta Koçberî û Întegrasyonê ya eyaleta Rheinland-Pfalz li Almanyayê kar kiriye.

Tîrûpişka sêyem a Rûdawê wê di Newroza îsal de bê kişandin. Ji bo tevlîbûna tîrûpişkê û qezenckirina bilêta firokeyê, pêwîst e her xwendevanek 5 kuponên ji hêjmarên Rûdawê yên cuda berhev bike, nav û hêjmara telefona xwe li ser wan kuponan binivîsine û ji navnîşana Rûdawê li bajarê Kolnê re bişîne.

# Welî çû ser dilovaniya xwe



**Duhok (Rûdaw) -** Gaziyê Kurd yê bi navê Weliyê Heskîfî şeva 19ê Sibatê li Duhokê çû ser dilovaniya xwe. Welî roja 20ê Sibatê li Duhokê li Goristana Sahke hat veşartin.

Weliyê Heskîfî di dawiya meha Çileyê de ji Duhokê bi alîkariya saziyeke tendirustiyê, bi mebeste dermankirina nexweşiya pençeşêra kezeba reş, hatibû bajarê Almanya Hamburgê. Li Almanyayê heval û dostên wî di Facebookê de bi mebesta berhevkirina alîkariya maddî komek ava kirin û mesrefên wî yên nexweşxaneyê derxistin. Piştî ku doktorên nexweşxaneyên Hamburg û Hannoverê jî gotin ku çareseriya wî tune ye, roja 9ê Sibatê Welî ji Firokexaneya Dusseldorfê ligel du hevalên xwe yên alîkar vegeriya Başûrê Kurdistanê û roja din giha mala xwe ya li Duhokê.

Beriya dilovaniya Welî, bav û birayên wî yên li Batmanê çûn Duhokê û serdana wî kirin û roja veşartina wî jî bav û birayê wî amade bûn.

Weliyê Heskîfî di sala 1977ê de tevlî rêxistina PKKê bûbû û di sala 1991ê de ji ber teqîna mayînê lingê xwe wenda kiribû û di sala 2005ê de li Başûrê Kurdistanê li Duhokê zewicîbû. Nexweşiya Welî di payîza 2011ê de diyar bûbû û li Başûrê Kurdistanê û li Îranê li gellek nexweşxane û doktoran geriya lê ji bo pençeşêra kezeba reş ti çareyek nedîtibû. Keçeka Welî ya 4 salî û kurekî wî yê 2 salî hene.

# Mele Kirêkar dixwaze biçe Somalyayê

» Kirêkar ji dezgehe medyayê ya norwêcî NRK re axivî û diyar kir ku bi dîtina wî civaka norwêcî baştirîn civake li Ewropayê, lê dîsa jî ew hez dike biçe Somalyayê.



**Oslo (Rûdaw) -** Bo yekem car, piştî du salan, Mele Kirêkar rê da hevpeyvîneke ligel medyayên norwêcî. Van rojan Mele Kirêkar dîsa derket pêşberî dadgehek Osloyê, ji ber ku ew tê tawanbar kirin ku gefa kuştinê li Erna Solberg kiriye. Kirêkar ji dezgeha NRK re dibêje ku bêdadaletî ligel wî hatiye kirin û wî ti caran gef li kesekê nekirine. Kirêkar ji aliyê xwe ve siyasetmedarê norwêcî Carl I. Hagen tewanbar dike ku gef li wî kirîne: ”Dema Carl I.Hagen daxuyaniyek fermî da û got ku Mele Kirêkar terrorîst e, erê ev jî weke gef nayê hejmartin?” Kirêkar dibeje ku ji ber sedemên ewlekariyê ew êdî nikare derkeve derve jî û sedemên vê yekê jî siyasetvan û medya norwêcî dibîne: ”Bêguman ez nikarim bi tenê biçim derve, ev jî ji ber ku medyayê atmosfera dewrûberên min jehir kiriye. Ez bi tenê me û ti piştevanê min nîne, ti welat jî nîne ku piştevaniya min bike.”

### Dixwaze biçe Somalyayê

Kirêkar dibeje ku Norwêc di şerê li dijî îslamê de ye, lê pesnê civaka norwêcî dide û wê diparêzê: ”Rojava heta niha di şerê li dijî Îslamê de ye, Norwêc jî beşeke ji Rojava. Ez ne li dijî Rojava me, lê belê Rojava dijî min e.” Kirêkar dibeje ku ew ti tiştê xirab di civaka norwêcî de nabîne û yên ku wî rexne dikin siyaset, siyasetvan û medya norwêcî ye û wiha didomîne: ”Civaka norwêcî baştirîn civake li hemû Ewropayê û hejmara norwêciyên ku sempatiya wan bo min heye, bêtire ji wan kesên ku di medyayê de rexneyan li min dikin.”

Kirêkar tekez dike ku ew naxwaze vegerê Îraqê, ji ber ku ew hîn jî ji kuştin, zîndankirin û îşkencekirina xwe ditirse lê ew dixwaze ji Norwêcê biçe: ”Ez hêvî dikim ku bikaribim biçim Somalyayê û wan fêrî zimanê erebî bikim. Ez hez dikim bi azadî, serbilindî û bi beha biçim, neku ji ber tiştekî bêm zîndankirin.”

## Mele Kirêkar

*• Navê dirust: Necmedîn Ferec Ehmed*
*• Kurd e, ji Başûrê Kurdistanê ye*
*• Jidayîkbûn: 7ê Tîrmeha 1956ê*
*• Mela û serokê berê yê komeke çekdar bû li Başûrê Kurdistanê*
*• 1991ê wek penaber hatiye Norwêcê*
*• Serokatiya grûba terorîstî ya kurdî ”Ansar-Al-Îslam” kiriye*
*• Li Hollandayê bi tohmeta xebata terorîstiyê 2002-2003 hatibû zîndankirin*
*• Di 2003yê de biryara derxistina wî ji Norwêcê hatiye dayîn, lê hîn jî li wî welatî dijî*
*• Ji 2006ê ve di lîsteya fermî ya hikûmeta Amerîkayê de wek terorîst hatiye hejmartin*
*• Neteweyên Yekgirtî Mele Kirêkar kiriye lîsteya palpiştên aktîv yên Al-Qaîdayê*
*• Di 25ê Çileya 2010ê de zavayê Kirêkar di dema êrişeke li ser mala Kirêkar hat brîndar kirin, piştî hingê Kirêkar bar kiriye maleke din û gotiye ku pêwîstiya wî bi parastina polîsan nîne.*

***Çavkanî:*** *Leksîkona Mezin a Norwêcî, Wikipedia, NRK*

**Rûdaw**

**Rojnameyeke siyasî û heftane**

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Mehmet Sebatli
sebatli@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Mihemed Tahir
mtahir2011@windowslive.com

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Ayhan Çiftçî

**Marketing û reklam**
Mansour Sedghi
m.sedghi@rave-online.org

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

**Pêwendî**
Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net / www.rudaw.eu
info@rudaw.eu

**Belavkirin / Vertrieb:**
Axel Springer Vertriebsservice GmbH
Süderstraße 77
20097 Hamburg
www.as-vertriebsservice.de

Rûdaw ji bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.

# Gavek ji bêçaretiyê:
# Parlementerên BDPê jî ketin greva birçîbûnê



**Beştaş û Canan:**
Ti rêyeke din nemaye



Medya Denîz

Komeke parlementerên BDPê û yên Bloka Ked û Azadiyê rojên 20 û 21 Sibatê bi armanca piştgiriya du parlementerên girtî yên li Girtîgeha Amedê, dest bi greva birçîbûnê kirin. Rûdawê beriya vê çalakiyê xwe gihand çendîn siyasetvanên Kurd û li nêrîna wan derbarê çalakiyek wiha ya parlementeran pirsî. Parlementerê BDPê yê Colemergê Esat Canan, nivîskarê rojnameya Tarafê Orhan Mîroglu, kevneparlementerê AKPê yê Amedê Abdurrahman Kurt û Parêzer Meral Daniş Beştaş greva birçîbûnê ya perlementeran û grevên berê nirxandin.

**Parlementerê BDPê yê Colemergê, Esat Canan:**

Weke tê zanîn 5 hevalên me, tevlî ku wekî parlementer hatine hilbijatin jî, hê jî di zindanê de girtî ne. Çalakiya herdu hevalên me, greva birçîbûnê ya ku Parlementera Şirnexê Selma İrmak û Faysal Sariyildiz di 17 Sibatê de li Girtîgeha Amedê ya Tîpa E dest pê kirin, xwediyê wateyeke dîrokî ye. Em jî wek parlementerên BDP û yên Blokê em du roj dikevin grevê û piştgiriyê didin hevalên xwe.

**Armancên çalakiya me ev in:**

• Divê operasyonên ku AKP li dijî me birêve dibe bên rawestin.
• Divê tecrîda li Îmraliyê bi dawî bibe.
• Divê opersyonên leşkerî bi dawî bibin.
• Divê operasyonên ku di bin navê KCKê de tên kirin û li ser gelê me bûne zilm, bi dawî bibin.
• Em hewl didin vê peyamê bidin ku Pirsgirêka Kurd bi operasyonên leşkerî nayê çareserkirin, lê tene bi rêyên demokratîk çareser dibe.

**Nivîskarê rojnameya Tarafê, Orhan Mîroglu:**

Grevên birçîbûniyê û rojiya mirinê di nava tevgera Kurd de di 30 salên dawî de weke çalakiyeke helwest nîşandanê tê kirin. Ji ber ku li Tirkiyeyê rewşa siyasî nayê guhertin, ev cûreyê çalakiyê zêde tê bikaranîn. Lê mixabin ev cûreyê çalakiyê heta niha ti encameke girîng bi dest nexistiye. Li gor min, çalakiyeke wisa ku karibûya girseya gel bixista nava xwe, baştir dibû. Bingeha vê çalakiyê jî hebû, BDP dikare fikir û armancên xwe di medyayê de nîqaş bike, lê nekir. Ez bawer nakim ku greva birçîbûnê bandorek mezin derxîne holê. Parlemento, medya û girseya BDPê platformên herî baş in, divê ev platform bihatina bikaranîn. Grevên birçîbûnê, rojiya mirinê ne çalakiyên çareserkirinê ne.

**Daxwazên İrmak û Sariyildiz:**

• *Divê zext û astengiyên li pêşiya kurdî bên rakirin.*
• *Ji bo kurdî di her aliyên jiyanê û karên femî de bê bikaranîn, garantiyên yasayî bên danîn.*
• *Divê hemû girtiyên siyasî bên berdan û operasyonên leşkerî bi dawî bibin.*
• *Divê tecrîda li ser Ocalan bê rakirin û ji bo karibe piştgiriya çareseriyê bike, jê re derfetên tendirustî, ewlekarî û teknîkî bên dayîn.*

**Abdurrahman Kurt (Kevneparlementerê AKPê ye Amedê):**

Ji serî de ez di wê baweriyê de me ku siyaseta BDPê sûd nade gelê Kurd, lê zerarê didê. Siyaseta wan pirsgirêkan çareser nake, dixitimîne. Ez dikarim bêjim ji ber vê siyasetê helwesta AKPê ya çareseriyê jî hat xitmandin. Diviyabû agirbesek dualî bi herdu aliyan jî bidana pejirandin, daku atmosfereke aşitîxwaz dest pê bikira. Lê ew tenê ji aliyekî daxwaziyan dikin, nikarin ji aliyê din re tiştekî bêjin. BDP nekarî di navbera dewlet û rêxistinê de bibe pirek, lê di navbera herduyan de hertim mayîn çandin. Greva birçîbûnê ne çare ye. Tişta heri baş ew e ku BDP ne li zindanê, li derve tiştekî din bike.

**Meral Daniş Beştaş (Parêzer):**

Divê beriya her tiştî rewşa ku niha li zindanan heye, bê dîtin. Ew ne tenê bo daxwaziyên siyasî vê çalakiyê dikin, herwiha pêdiviyên wan ên mirovahî jî hene. Mafên wan li zindanê tên binpêkirin. Odeya ku Selma İrmak û hevalên wê lê dimînin ji bo 12 kesan e, lê niha di wir de 36 kes hene. Girtîgeha Amedê ya Tîpa E niha du caran ji kapasîteya xwe zêde tije bûye. Li hinek odeyên jinan sê caran hejmara girtiyan zêde bûye. Dibêjin ku em nikarin bîhna xwe bidin û bistînin. Tirkiyeyê di bin navê KCKê de binpêkirinên mafê mirovan û girtina sivîlan gihandiye asta herî bilind. Grevên birçîbûnê mirov dest pê dike, dema ku ti rêyeke din a çareseriyê nemîne. Niha rewşa girtîgeha Amedê wisa ye û bi vî rengî ew girtî hewl didin dengê xwe bigihînin raya giştî.



**Mîroglu û Kurt:**
Grevên birçîbûnê bêsûd in



# Selahedîn Demîrtaş li Hewlêrê tabû şikandin



Hevserokê Partiya Aştî û Demokrasiyê (BDP) Selahattîn Demîrtaş

**Hewlêr (Rûdaw) -** Hevserokê Partiya Aştî û Demokrasiyê (BDP) Selahattîn Demîrtaş di merasima bîranina 66. salvegera damezrandina Komara Kurdistanê ya Mehabadê de, ku li bajarê Hewlêrê birêveçû, bo cara yekem di helkefteke fermî de gotara xwe bi zimanê kurdî pêşkêş kir.

Di wê merasîmê de, ku serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî jî gotarek tê de pêşkêş kir, Selahattîn Demîrtaş berî ku gotara xwe bixwîne, got: "Daxwaza lêborînê dikim, ez zaza me, kurmanciya min ne zêde baş e, eger kêmasî hebin divê li min biborin." Demîrtaş di gotina xwe de amaje da pêgeh û girîngiya Komara Kurdistanê ya Mehabadê di dîroka Kurdan de, herwiha pêdagirî li ser girîngiya sazkirina kongreya netewî jî kir, lewra jî gotara wî bû cihê balkişandinê.

Demîrtaş di pirraniya helkeft û hevpeyvînên rojnamevanî de bi zimanê tirkî dipeyive, lewma axaftina wî bi zimanê kurdî di wê helkeftê de bû cihê balkişandina hevrêyên wî jî ku pê re hatibûn Herêma Kurdistanê. Parlementera BDPê ya Amedê Leyla Zana, ku ew jî weke endama şanda BDPê û KCDê tevlî merasimê bû, ji Rûdawê re got: "Ji aliyê derûnî ve Demîrtaş ji zû ve ew tabû şikandiye ku bi zimanê kurdî bipeyive. Lê di rojeke taybet wek îro de, axaftina bi zimanê kurdî bo birêz Demîrtaş bêguman şikandina tabûyan e."

**Leyla Zana: Di rojeke taybet de axaftina bi zimanê kurdî bo birêz Demirtaş bêguman şikandina tabûyan e.**

Parlementer û serokê KCDê Ahmed Turk jî ku di wê helkeftê de amade bû, got: "Çend sal in li Bakur bi kurdî dipeyivin, lê di rojeke girîng a wek îro de kek Selahattîn baştir dît ku bi kurdî bipeyve. Ji gellek kesan re neçaverêkirî bû, lewma li cem wan kesan şikandina tabûyan bû."

Selahattîn Demîrtaş jî derbarê xwendina gotara xwe bi zimanê kurdî ji Rûdawê re got: "Ev karekî asayî ye." Derbarê axaftina li Parlementoya Tirkiyeyê bo fraksyona BDPê jî, navborî got: "Axaftina bi zimanê kurdî li parlementoyê qedexe ye, lê di gellek panel û civînên cemawerî de bi kurdî jî dipeyivim."

## Şirove


Partiyek Nû
Mahmut Kilinç

Di rojname Rûdawê hejmara 134 de nûçeyek hebû. Sernûçe wiha bû; "Li Bakur helwdanên bo partiyeke muhafazakar-kurdistanî berbi encamê ve diçin, Îslam û Kurdistan wê di navê partiyê da hebin."

Gellek caran ji hinek derdoran daxwaz û ramanên wiha tên bihîstin, lê heta îro ti gavên berbiçav nehatin avêtin. Heçku, li Bakurê Kurdistanê valahiyek siyasî heye û partiyên sistema siyasiya Tirk ji vê valahiyê sûdê werdigrin û ji dengên Kurdan parek mezin di bin sîwanên xwe de tomar dikin.

Di hêla din de siyaseta Bakurê Kurdistanê ya îro, dezgehên wê pewîst nabînin xwe rexnebikin û xeletî û kêmasiyên xwe bibînin, ji ber ku hemberiyek siyasî tune ye.

Di Bakurê Kurdistanê de siyaseta eşkere (peyva legal li xweşiya min naye) ji HEPê (Partiya Keda Gel) dest pê kir. Bi baweriya min, bi damezrandina HEPê, di siyaseta bakur de miladekî nû dest pê kir. Heta wê rojê pirraniya siyasetvanên Kurd, di nav partiyên sistema siyasiya Tirk da cih digirtin, lê bi damezrandina partiyê birek mezin berê xwe dan wê. Helwesta beşek siyasetvanan wiha bû, lê ji gel para mezin di bin sîwana partiyên sistema siyasiya Tirk de ma, hê îro jî bi giştî rewş wiha ye. Jixwe pirsgirêka siyaseta Bakurê Kurdistanê jî ev e, ango çawaniya bi destnexistina pirraniya deng û piştevaniya gelê Bakurê Kurdistanê ye.

Divê her kes, herwiha saziyên civakî û siyasî ji xwe bipirsin, gelo ew çi bikin ku pirraniya gelê Bakurê Kurdistanê ji bin sîwana sistema siyasiya Tirk bê derxistin?

Wekî her civakê, her gelî miletê K urd jî ji polek civakî, ji reng û beşek kes pêk nehatiye, herwiha ew jî wekî hemû miletan, di nava xwe de polên civakî, cûda cûda reng û beşên civakî dihewîne.

Helbet mafê rêxistinî yê her pol, reng û beşên civakê heye. Jixwe siyaset ji vir dest pê dike.

Lê çi heye, ku di Bakurê Kurdistanê de di bergeha niştemanî de destketî û sazîbûnek hê bi dest nekitiye. Derdorên ku dixwazin bi mebesta damezrandina partiyekî gav bavêjin, her kîjan derdor dibin bila bin, divê rastiya niştimaniya Bakurê Kurdistanê bidin ber her tiştî û deriyê xwe ti cara ji hevkariyê ra negrin. Eger em dixwazin bo azadiya miletê Kurd siyasetek hêja bimeşînin û ked bidin, gav bavêjin divê em bi giştî li berjewendiya gelê Bakurê Kurdistanê bifikirin.

Em dizanin, ku gelê Kurd û herwiha gelê Kurdistanê ne tenê ji misilmanan pêk tê. Gelê Kurdistanê ji Êzîdiyan, Xiristiyanan û ji Elewiyan pêk tê. Di nûçeyê de hevokekê bala min kişand, tê gotin; "fikr û ramana Îslam û Kudistanî li seranserê Kurdistanê belav bike û ehlaqekî 'îslamî û Kurdistanî' ava bike" Bi baweriya min, avakirina sincekî (ehlaq) îslamî ne karê partiyekî ye, dikane alîkar be lê ew karê civaka sivîl e. Dîsa çima li şûna "muhafazakar" ne demokrat? Bi baweriya min pêdiviya gelê Bakurê Kurdistanê bi partiyekî, bi rastî demokrat û Kurdistanî heye û divê rojek pêş de bê damezrandin û hewl bide, ku nûnertiya hemû ol, rêol, reng û beşên civakê bike.

Li vir pirsek derdikeve pêş. Gelo helwesta PKKê wê çawa bibe? Eger amanc derxistina gelê Bakurê Kurdistanê ji bin banê sistema siyasiya Tirk de be, divê PKKê berevajî astengbûnê alîkar be. Ji ber ku ev, bo doza Kurd û Kurdistanê gavek gellek girîng e.

### Berendamên redkirî yên Kurd ji bo Parlemetoya Îranê, bo Rûdaw axivîn:

# "Rojhilatê Kurdistanê wê hilbijartinên Parlementoyê boykot bike"

**Azad Kurdî**

Biryare di 2yê Adara 2012ê de gera 9. a hilbijartinên Parlementoya Îranê rêve biçin. Lê berendambûna pirraniya nûnerên Kurd ên niha di parlemanê de û gellek kesayetiyên naskirî yên Kurd hatiye redkirin û nikarin bibin berbijêrên bajarên Kurdan.

Di 33 salên desthilatdariya Komara Îslamî de 10 hilbijartinên serokkomarî û 8 hilbijartinên parlementoyê hatine rêvebirin ku Kurd hin caran beşdarî wan bûne û zêdetir jî boykot kirine. Di gera yekemîn a hilbijartinên Meclîsa Îranê piştî sala 1979ê de Kurd berfireh beşdar bûn û hêvî dikirin ku statûya di wê demê de îmkan û derfetê bide wan ku nasnameya xwe ya neteweyî di qanûnên welat de bi cîh bikin. Herwiha di hilbijartina Xatemî de wek serokkomarekî reformîst di sala 1997ê de Kurd bi berfirehî beşdar bûn, herwiha Kurd di hilbijartinên meclîsa şeşem de jî bi awayekî aktîv tevlî bûn. Ji xeynî wan 3 gerên hilbijartinan, Kurd bêtir ketine eniya boykotkirina wan 18 hilbijartinan.

Hemû partiyên siyasî yên Rojhilatê Kurdistanê di daxuyaniyên hevbeş û cuda de diyar kirine ku ewê hilbijartinên vê gera Parlamena Îranê boykot bikin û ji xelkê xwestine neçin ser sindoqên dengdanê. Tenê Eniya Yekgirtî ya Kurd (EYK) ku saziyek legal e li Îranê lê bê desthilat e, berendamên Kurd nasandin, lê berendamên vê Eniyê jî nehatin qebûlkirin. Lijneya Rêveberiya Hilbijartinên Îranê pirraniya parlementerên niha û berendamên din yên Kurd li gor xala 3. a maddeya 30 a yasaya hilbijartinên Îranê wek alîgir û piştevanên partiyên kurdî ên dijberî hikûmetê red kirine!

Parlementerê berê yê Kurd ê bajarê Merîwanê Ebdulah Suhrabî ku ji aliyê EYK ve hatibû berbijarkirin, ji mafê berbijarbûnê hat bêparkirin. Navborî ji Rûdawê re ragehand: "Em wek Eniya Yekgirtî ya Kurd hilbijartinê wek derfetekê dibînin ji bo xebata siyasî, sivîl û daxwazkirina mafên Kurdan ên rewa. Em di desthilata siyasî ya Îranê de ne beşdar in û tenê em dikarin meclîsê bikar bînin daku doza mafên xwe bikin. Lê sîstema Komara Îslamî rê nade nûnerên cihê baweriya gel ku biçin meclîsê." Suhrabî diyar kir ku armanca wan ew bû di vê rewşa hestiyar a Îranê de bikevin meclîsê û rola xwe bilîzin: "Ji ber ku berendamên me nehatin qebûlkirin, em jî beşdarî hilbijartinan nabin." Suhrabî diyar kir ku parlemen derfeta herî baş e ji bo çalakî û têkoşîna sivîl û wiha dom kir: "Lê Meclîsa Îranê di destê desthilatê de ye û pirr fîlter danîne ku nûnerên cihê baweriya gel neçin meclîsê û berevaniyê ji mafên xelkê nekin. Loma hilbijartinên Îranê ne azad û demokratêk in." Parlementerê du gerên Meclîsa Îranê yê bajarê Sine, Celal Celalîzade, tenê hilbijartinên gera şeşem yên parlemenê wekî hilbijartinên azad dizane û dibêje hilbijartin li Îranê ne azad û demokratîk rêve diçin û wiha dirêjî da daxuyaniya xwe: "Hilbijartinên bi vî awayê ku li welatên azad û demokratîk rêve diçin, li Îranê tune ne. Hilbijartin divê di atmosferek azad û bê destwerdana hêz û aliyên leşkerî û ewlekarî û rêvebir bên organîzekirin û merc e partî û saziyên siyasî bi berfirehî beşdar bin. Lê li Îranê Konseya Parêzvan her berendamên ku nexwaze red dike û ji mafê xwezayî yê berbijarbûnê tê bêparkirin." Celalîzade eşkere kir ku ji xeynî hêzên opozîsyonê li derve, vê carê heta Reformîstên li hundirê welat jî hilbijartinan boykot dikin, ji ber ku pirraniya wan di girtîgehan de ne. Navborî derbarê rêjeya beşdariya Kurdan de got: "Li bajarên Kurdistanê rêjeya beşdariyê wê gellekî kêm be."


**Ebdulah Suhrabî ji Eniya Yekgirtî ya Kurd:** *"Berendamên me nehatin qebûlkirin, em jî beşdarî hilbijartinan nabin."*


**Celal Celalîzade:** *"Li bajarên Kurdistanê rêjeya beşdariyê gellekî kêm dibe."*


**Mesûd Şemnijad:** *"Ji ber ku min dixwest nûnerê gelê Kurd bim û ne yê hikûmetê, rê nedan ez bibim berendam."*


**Ebdulezîz Mewlûdî:** *"Tenê ji bo 15-18% ji daniştvanên Îranê hilbijartina azad heye."*

Parêzerê ciwan ê Kurd û mamosteyê zanîngeha Urmiyê, Mesûd Şemnijad, ku wek parêzerê gellek girtiyên siyasî yên Kurd kar kiriye, li bajarê Urmiye xwe beredam kiribû, lê kêrhatîbûna wî hat redkirin. Şemnijad ji Rûdawê re got: "Ez û pirraniya berendamên Kurd li gor xala sêyem a maddeya 30 a yasaya hilbijartinên Îranê, bi tometa alîgirîkirin ji partî û saziyên dijberî hikûmeta Îranê, hatine redkirin. Lê ez parêzerê gellek girtiyên siyasî li girtîgeha Urmiyê û vê wilayetê bûme û rayedar baş dizanin ku kesên wek min ne endamên partiyên siyasî ne, lê ne ligel desthilatê ne jî. Sîstem dixwaze ku ew kes herin meclîsê û dezgehên dewletî ku di çarçova fikrî ya wan de kar bikin û di hêla wan de tevigerin. Rê nadin ku nûnerên cihê baweriya xelkê bikevin hilbijartinan."

Bi baweriya parêzerê Kurd Mesûd Şemnijad, fîlter li ser Kurdên Urmiyê zêdetir heye û qet rê nadin ji Urmiyê nûnerên rasteqîn û cihê baweriya Kurdan herin meclîsê. Şemnijad wiha dirêjî da axaftina xwe: "Ji ber hebûna fer û cudahîdanînên siyasî, civakî û aborî û astengkirina rêya beşdariya Kurdên Urmiyê û deverên derdorê di rêvebirinê de û koçber nasîna Kurdan li vê deverê û darvekirina bikom a Kurd, bi tawanên siyasî û qaçaxa madeyên hişber û hwd., min biryar da ku xwe berendam bikim, lê pirr hêsan ez red kirim." Mesûd got: "Ji ber ku min dixwest nûnerê gelê Kurd bim û ne yê hikûmetê, rê nedan ez bibim berendam."

Çavdêrên siyasî hilbijartinên Îranê ji ber hebûna fîlterên dijwar û destwerdana rayedar û saziyên rêvebir û bêjîngkirina berendaman, ne azad û ne demokratîk dizanin. Bi taybetî berendamên Kurd û neteweyên din ku ne girêdayî hikûmetê ne, zêde tên redkirin. Bi baweriya nivîskar û çalakvanê sivîl Ebdulezîz Mewlûdî yê ji Mehabadê, guhertinên ku heta niha di qanûnên hilbijartina Îranê de pêk hatine, proseya hilbijartinê dijwartir kirine û hilbijartin ne azad in û xelk bi guman li hilbijartinan dinêre: "Hilbijartin tenê ji bo muhafezakaran azad e û dikarin berbijar bin û beşdar bin. Kesayetiyên azad û serbixwe ji vî mafê bêpar in." Navborî tekez kir: "Tenê ji bo 15-18% ji daniştvanên Îranê hilbijartina azad heye."

Bi baweriya Mewlûdî, çênabe ku aliyek îradeya xwe li ser hemû pêkhateya civakê ferz bike û yasaya hilbijartinên Îranê pêwîstî bi guhertinên bingehînî heye, heta ku hilbijartin bibin hilbijartinan azad û li gor standardên navnetewî. Navborî tekez kir ku diviyabû berendamên serbixwe û ne girêdayî hikûmetê yên Kurd xwe berbijar nekiribûne: "Ji ber ku berî destpêbûna proseya navnivîsîna berbijêran, reyadarên hikûmetê ragehandin ku kesên ne di çarçoveya fikrî û îdeolojîk a wan de, bila xwe berbijêr nekin û ewê wan red bikin. Di vê navberê de para Kurdan zêde ket û pirraniya berbijêrên Kurd hatin redkirin." Li gor Mewlûdî jî vê carê wê beşdariya gel gellekî kêm be, bi taybet li Kurdistanê: "Ez bawer im dibe ku ji sedî 20ê kesên xwedî mafê dengdanê tevlî hilbijartinan bibin. Lê belkî ji ber hinek taktîk û kiryarên rayedaran rêjeya tevlîbûnê ji 5-10% zêde bibe."

# Rojavayê Kurdistanê xwe ji bo boykota referandûmê amade dike

**Hêmin Xoşnaw**

Kurdên Rojavayê Kurdistanê referandûma destûra nû ya Sûriyê, ku biryar e 26ê vê mehê birêve here, boykot dikin. Bi baweriya Kurdan, tiştek ji bo Kurdan di vê destûrê de tune û bi "hişmendiyeke Beesî" hatiye nivîsandin. Ev helwesta Kurdan jî wek helwesta opozisyona sûrî û Rojava ye.

Destûra Sûriyê di serdema serokkomarê berê Hafiz Esed, di sala 1973yê de hatiye danîn. Piştî mirina Hafiz Esed, daku kurê wî Beşar cihê wî bigire, maddeya 4. ku taybet e bi temenê serokkomar, di hundirê şev û rojekê de "hat serrastkirin", ji ber ku li gor destûrê "pêwist e temenê serokkomar ne kêmî 40 salan be." Lê wê demê temenê Beşar Esed 34 sal bû.

Piştî ku bahoza Bihara Erebî, di 15ê Adara sala borî de, li Sûriyê jî rabû, Beşar Esed sozên reforma îdarî, siyasî û destûrî dan. Serokê Sûriyê bi mebesta amadekirina destûreke nû komîteyeke parlemenî pêk anî û roja 12ê vê mehê komîteyê projeya destûra nû radestî serokkomarê Sûriyê kir. Wî jî roja 26ê vê mehê diyar kir bo çêkirina referandûmeke giştî li ser destûra nû. Ev pêngav tenê ji aliyê Çîn û Rûsyayê bi erênî hat pêşwazîkirin, lê Amerîka wek "karekî cihê pêkenînê" binav kir.

Bi baweriya çavdêrên siyasî, rêjîma Esed li ser keviya rûxandinê ye, lewma ev prose tiştekî bêwate ye û bandorê li ser bûyerên Sûriyê nake. Parêzerê kurd û rûniştiyê Şamê Ebdulla Îmam jî referandûma 26ê vê mehê wek "qajeqaja dawî ya jinavçûna rêjîma Esed" wesf dike û dibêje: "Bi baweriya rêjîma Sûriyê bi vê hewldanê dikare hinekî din temenê xwe dirêj bike, lê êdî mesele qediyaye, lewra referandûm ti guherînê dirust nake." Derbarê cudahiya destûra kevn û nû, di baweriya Îmam de: "Cudahiyeke berçav tune, desthilata serokkomar bêtir bûye totalîter."

Li gor maddeya 8. ya destûra Sûriyê de, ku di sala 1973yê de hatiye nivîsandin, "Partiya Beesê serokatiya dewlet û civakê dike." Lê di destûra nû de ev madde hatiye rakirin û di dewsa wê de hatiye nivîsandin "Sûriyê welatekî pirrhizbî ye û desthilat bi hilbijartinên giştî tê diyarkirin." Herwiha mafê her kesekî heye tenê du caran bibe serokkomar, her kesek jî bixwaze xwe bo posta serokkomar berbijêr bike, divê dengê 35 endamên parlementoyê bidestve bîne.

### Desthilat ji partiyê derbasî Esad dibe

Bi baweriya nûnerê Ewropayê yê Partiya Azadî ya Kurd, Welîd Şêxo, hilweşandina wê maddeyê ne zêde giring e. Şêxo ji rojnameya El-Şerq El-Ewset re ragihand: "Desthilata serokkomar hatiye zêdekirin. Yanî di destûra nû de desthilat ji partiyê hatiye wergirtin û bûye para serokkomar."

Herwiha bi dîtina endamê polîtburoya Partiya Yekîtiya Kurd li Sûriyê, Fûad Elîko, li gor destûra nû ji bilî Beesiyan kes nikare xwe bo serokkomariyê wekî berbijêr nîşan bide. Elîkoyê ku demekê endamê Parlementoya Sûriyê bû, ji Rûdawê re ragihand: "Her kesek bixwaze xwe bo postê serokkomar weke berbijêr nîşan bide, pêwist e 35 parlementer piştgiriya wî bikin. Eger kesek ne Beesî be, nikare vê piştgiriyê bidestve bîne, ji ber ku hemû endamên parlementoya niha ji aliyê partiya Beesê hatine danîn."

Rojavayê Kurdistanê li gor peymana Sykes-Picot di sala 1916ê de, bêyî liberçavgirtina vîna xelkê wê, bi Sûriyê ve hat girêdan. Lê destûra Sûriyeyê ya kevin û nû, bêyî ku guh bidin vê rastiyê, Sûriyê wek beşekî ji netewe û welatê erebî pênase dike û ev jî diselimîne ku siyaseta înkarkirina Kurdan, ku li gor serjimêriyên nefermî ji sedî 16ê xelkê Sûriyê pêk tînin, berdewam e.

Di destûra nû ya Sûriyê de ti amajeyek bi navê Kurdan û neteweyên din nehatiye kirin. Lewma bi dîtina parêzerê kurd yê rûniştiyê Şamê Ebdulla Îmam, divê Kurd xwe zêde bi meseleya wê destûrê ve mijûl nekin, ji ber ku rêjîm ber bi rûxandinê diçe û "pêwist e Kurd çavlirêya tiştekî ji vê destûrê nekin, ji ber ku em jî slogana "birûxe rêjîm" bilind dikin, nabe em li benda derketina destûreke demokratîk ji aliyê vê rêjîmê bimînin."

### PYD jî ligel boykotê ye

Fûad Elîko dibêje ku destûrek ku ti amajeyê nede maf û navê Kurdan "ji bilî redkirin û boykotkirina wê ti rêyeke din tune. Hemû partiyên kurdî ligel boykotkirina rapirsiyê ne, bi baweriya min Civata Niştimanî ya Kurdî piştî çend rojên din bi fermî boykota referandûma destûrê radigihîne."

Serokê Partiya Yekîtiya Demokrat (PYD) Salih Muslim Mihemed jî tekez dike ku ti hêviyek ji destûra nû bo Kurdan nayê kirin, lewma dibêje baştirîn helwest redkirina wê ye: "Wek PYDê em destûra nû wek destûreke nedemokratîk û şoven wesf dikin û bi me baş e bê boykotkirin. Lê wek partî em biryara dawî nadin, bi me baş e ku nûnerên Civata Gel û Civata Niştimanî ya Kurdî bi hev re biryarê li ser bidin."

Derbarê helwesta Desteya Hevahengiyê derbarê referandûma destûrê de, Serokê PYDê Salih Muslim Mihemed, ku cîgirê serokê wê desteyê ye jî, got: "Meyla boykotkirina destûrê di nav Desteya Hevahengiyê de heye, lê hê jî biryara xwe ya dawî nedane."

## PYD li Rojavayê Kurdistanê rêyan kontrol dike

# Bi destûra Esed?

**» Endamekî Polîtburoya Partiya Yekîtî:**
PYDê ew xalên kontrolê bi moleta rêjîma Sûriyê danîne



Danîna xalên kontrolê li navçeya Efrînê li Rojavayê Kurdistanê ji aliyê Partiya Yekîtiya Demokrat (PYD) ve, partiyên din yên Rojavayê Kurdistanê aciz kir, ji ber ku li gor berpirsên wan partiyan, di van xalên kontrolê de tade li endam û alîgirên partiyên din tê kirin. Berpirsên PYDê jî dibêjin ku ew xal ji bo parastina ser û malên hevwelatiyan danîne. PYD wek şaxa Sûriyê ya PKKê tê hejmartin.

Di çend rojên borî de wêneyên çend xalên kontrolê li Rojavayê Kurdistanê di çend malperên kurdî de hatin belavkirin, ku bi rengên PYD/PKKê û wêneyên Ocalan hatibûn xemilandin. Herwiha dîsa di van çend rojên borî de PYDê nimayişeke endamên xwe yên rûveşartî li Rojavayê Kurdistanê bicih anî, ku cilûbergên reş, wek yên artêşa Mehdî, li xwe kiribûn û wêneyê Ocalan li ser sînga xwe danîbûn.

Endamê Civata Rêvebir a PYDê Aldar Xelîl red kir ku ew kom ser bi PYDê bin, lê got di vê dema nazik de Kurd bo parastin û birêvebirina xwe komîteyên cemawerî dirust dikin, yek ji erkên wan komîteyan jî parastina gund û deveran e û got ku "Dibe di nav komîteyeke diyarkirî de dostekî PYDê jî hebe." Aldar înkar nake ku di bin sîbera van komîteyan de çend kêşe jî derketin, sedemê wê jî wiha dibîne: "Pirraniya wan kesan ciwan in û xwîngerm in, bi awayekî hema hema reftar dikin."

Lê endamê Polîtburoya Partiya Yekîtî ya Kurd li Sûriyê, Ebdilbaqî Yûsiv, ji Rûdawê re got ku ew xalên kontrolê ji aliyê PYDê hatine danîn û îdia kir ku jî "Bo danîna wan jî molet ji rêjîma Esed wergirtine. Endamên PYDê bi çekan li navçeya Efrînê digerin, hemû millet dibêje rê li ber xelkê digirin û lêgerînê li kesan dikin. Bi razîbûna hikûmetê jî vî karî dikin."

Herwiha endamê serkirdayetiya Partiya Demokrat a Kurd li Sûriyê, Nûrî Birîmo, dibêje ku xelk giliyan dikin ji danîna wan xalên kontrolê yên PYDê ku li navçeyên kurdî danîne: "Eger ligel rêjîmê li hev nekiribana, nikarîbûn vî karî bikin. Hevwelatiyekî asayî nikare demançeyeke hilbigire, îcar çawa dikare xalên kontrolê deyne."

### Efrîn navenda PYD/PKKê ye

Efrîn bajarokekî kurdî ye li Rojavayê Kurdistanê û ser bi wîlayeta Helebê ye. Hejmara rûniştiyên wê nêzîka 350 hezar kesî ye. Xelkên wê deverê bêtir alîgirên PKKê ne. Hejmareke zêde ya ciwanên Efrînê di nav rêzên hêzên gerîllayên PKKê de jiyana xwe ji dest dane, herwiha çend berpirs û kadroyên bilind yên PKKê ji Efrînê ne. Lewma ev dever wek navendeke PYDê tê hejmartin.

Serokê Encûmena Niştimanî ya Kurdî li Sûriyê (ENKS), Ebdulhekîm Beşar, dibêje ku danîna xalên kontrolê ji aliyê PYDê li deverên kurdî nûçeyeke rast e û ne gotegot e: "Xaleke kontrolê nêzîkî sînorê Tirkiyeyê li Raco danîne, ku ala PKKê û wêneyên Ocalan bilind kirine." Beşar red kir ku ti valahiyeke emînî li deverê hebe ku pêwist bike xelk bi xwe rahêjin çekan û xalên kontrolê deynin, ji ber ku hê jî hêzên Sûriyê li wan deveran hene.

Endamê Polîtburoya Partiya Yekîtî ya Kurd li Sûriyê, Ebdilbaqî Yûsiv, jî dibêje ku çekdarên PYDê li seranserê Rojavayê Kurdistanê xalên kontrolê danîne: "Tenê wêneyên Efrînê belav bûne, lê li Dêrik û Qamişlo, heya Serê Kaniyê jî xalên kontrolê yên PYDê hene." Bi baweriya Yûsiv, ti hêncetek nîne bo danîna wan xalên kontrolê û "metirsî heye ew rewş bibe sedemê nakokî û şerê Kurd û Kurdan." Lê endamê serkirdayetiya PYDê Aldar Xelîl dûr dibîne ku ew xalên kontrolê bibin sedemê derketina şer: "Emê dest bi kampanyeke şiyarkirina gel bikin. Me hemû alî şiyar kirine ku sînorê armanca wan xalên kontrolê derbas nekin."

## “Em ligel olê hestên civakî û netewî jî didin zarokan”

# Li Mizgefta Seîdê Kurdî 230 zarok tên perwerdekirin

Azad Dîcle

Li bajarê Almanyayê Dortmundê nêzîkî 40 mizgeft hene û di nava wan de yek jî ya Kurdan e. Mizgefta Seîdê Kurdî, ya ku di sala 2001ê de hatiye vekirin, niha bûye yekem cihê Kurdên oldar ên Dortmundê. Li vê mizgeftê ligel pîrozkirina rojên olî û cejnan, xutbeya înê tê dayîn û herwiha taziye jî tên kirin. Melayê mizgeftê Hafiz Turhalli, ji bilî xutbeyê, her heftiyê du rojan perwerdeyê dide nêzîkî 230 zarokan jî. Mele Hafiz Turhalli diyar kir ku ew rojên înê piştî xutbeyê ji bo mezinan civînên nesîhetê li dar dixin û dawiya heftê jî di du beşan de perwerde dide zarok û ciwanên di navbera 6 û 20 salî de.



Wênê: Rûdaw

### Li Dortmundê 40 mizgeft hene

Bajarê Dortmundê li Almanyayê wek bajarekî futbolê tê naskirîn, lê li Dortmundê hejmarek bilind ji netew û olên cuda hene û lewma bajar wek bajarekî “multikultî“ jî tê nasîn. Endamê Mizgefta Seîdê Kurdî li Dortmundê, Zubeyir Bingol, da zanîn ku derdorê 40 mizgeftan li Dortmundê hene û pirraniya van jî mizgeftên Tirkan in û got, “Mizgeftên Milli Goruşê hene, yên Cemaeta Gulen û Suleymanciyan û herwiha mizgeftên Diyanatê jî hene. Çend mizgeft jî yên Ereban in û tenê yek mizgefta Kurdan heye.“ Bingol diyar kir ku di navbera mizgeftên Tirkan de nakokiyên kûr hene û got, “Her mizgeftek girseya wê ya oldar heye û di navbera wan de danûstandin qet nînin.”

### Kurd, Bosnayî û Ereb ten, lê Tirk nayên mizgeftê

Serokê Mizgefta Seîdê Kurdî, Hecî Nihemed jî bibîr xist ku ev mizgeft di sala 2001ê de ji aliyê xêrxwazên Kurd ve hatiye vekirin û got, “Beriya ku ev mizgeft bê vekirin, hemû Kurdên oldar diçûn mizgeftên Tirkan, lê niha ti kes naçe, her kesek tê vir.“ Wî herwiha got ku ji bilî Kurdan hinek Ereb û Bosnayî jî tên Mizgefta Seîdê Kurdî, “Lê Tirk nayên“.

Derbarê rêvebirîn û debara mizgeftê de jî Hecî Mihemed da zanîn ku nêzîka 200 endamên mizgeftê hene û her endamek mehanetiya xwe dide mizgeftê. Hecî Mihemed got ku nan û vexwarina zarokan jî mizgeft debar dike û wiha axivî: “Ez dikarim bêjim ku hemû Kurdên oldar yên Dortmundê yên ku nimêj dikin tên mizgefta me. Tenê ji bo xutbeya roja înê zêdeyî 300 kes tên û ji bilî nimêj û weciheyên olî hemû axaftin bi kurdî tên kirin.“ Hecî Mihemed herwiha diyar kir ku li mizgeftê mewlûd û taziye tên danîn, mahr tên birîn û rojên pîroz tên pîroz kirin.


Mele Hafiz Turhalli
Wênê: Rûdaw

### “Li vê mizgeftê ummet pêk hatiye”

Ji Mizgefta Seîdê Kurdî di rojên şemî û yekşemê de ji temenê 6 heta 20 salî, nêzîka 230 zarok û ciwan heftiyê du rojan li vir perwerdeya olî, civakî û dîroka Kurdistanê dibînin. Meleyê mizgeftê Hafiz Turhalli ev 7 meh in ku li vê mizgeftê dest bi melatiyê kiriye û piştî hatina wî perwerdeya zarokan dest pê kiriye. Turhalli rojên înê xutbe dide û rojên şemî û yekşemê jî bi perwerdeya zarokan re mijûl dibe. Derbarê perwerda zarokan de Turhalli daxuyand ku beriya ew dest bi perwerdeyê bikin gellek zarokên Kurdan diçûn mizgeftên Tirkan û li wir perwerdeya bi tirkî didîtin û got, “Em li vir rojekê zarokan bi xwendina Qur’anê re mijûl dikin û roja din jî dersên civakî, dirokî û ya zimanê kurdî didin.”

### Axaftin bi kurdî û almanî

Hafiz Turhalli daxuyand ku ew pêşeroja zarokan ji xwe re dikin armanc û hewl didin ku nifşekî bawermend, zana, xwendî û xwediyê nasnameya xwe mezin bikin. Turhalli wiha axivî: “Ji 230 zarokên me, nezîka 90ê wan keç in. Di nava wan de çendîn Ereb, Tirk û Bosnayî jî hene. Em axaftinên xwe zêde bi almanî dikin ji ber ku hemû zarok yekser almanî fahm dikin, lê zimanê me yê duyemîn jî kurdî ye. Tenê di xwendina Qur’anê de em erebî bikartînin. Herwiha em hewl didin ku motîvasyona zarokan a di dibistanê de jî xurttir bikin.”

Li gor Turhalli kêmasiya wan a herî mezin li mizgeftê ew e ku mamostayeke jin tune ku perwerdeyê bide jinên oldar û got, “Mixabin niha projeyeke me ya taybet bo jinên Kurd ên bawermend tune ye.”

# Evîneke biçûk li welatê xeribiyê


Hayrettin Bingol

*Evîn li bajarê Berlînê komeleyek civakî ye û bi perwerda zarokan, xebata ji bo ciwan û malbatan re mijûl dibe. Rêveberiya komelê ji Kurdan pêk tê û ew dixwazin di Newrozê de herin Kurdistanê û serdana çend bajaran bikin. Rêvebirê komela Evînê (Evin e.V) Hayrettin Bingol pirsên Rûdawê bersivandin.*

**Ez dixwazim pêşî navê komeleya we bipirsim, gelo we çima ev nav hilbijart?**

Min bi stragehekê penaberan de dest bi karê sosyalê kir. Hingê li stargehê 50 penaberên ciwan, ku bêyî malbat hatine Almanyayê, diman. Ji wan nêzikê 25 ciwan Kurd bûn. Ramanê sazbûna komela me jî wê demê derket holê. Me biryar da ku em cîhekî germîn û rewşa malbatî ji bo wan ciwanan saz bikin. Ji ber ku ew ciwan ji bo sazkirina komela me pirr alîkarî û piştgirî dan, me jî hingê got, ew komel bila ji bo penaberên ciwanên bê malbat re bibe “Evîneke piçûk li welatê xeribiyê”. Bi wî awayî me komela xwe “Evîn” bi nav kir.

**Kengê we ev komele saz kir?**

Di sala 1997ê de.

**Çend kes li cem we kar dikin? Hevkarên we ji kîjan netewî ne?**

Niha nêzikî 80 hevkarên me hene. Nêzikî 30 hevkarên me Alman in, yên din Kurd, Tirk, Ereb, Rûs, kesên ji neteweyên Slaw û ji welatên Afrika û Asya yê jî hene.

**Kar û xebatên we li ser çi ye/ne?**

Du xebatên me yên mezin hene: Xwedîkirin û perwerda ciwanan li malan û alîkariya malbatan li ser perwerdê Projeyên me ev in: “Karê Sosyalê li Dibistanan”, “Xebata ji bo Ciwanan” û “Karê civakî”.

**Hûn tenê li Berlînê kar dikin yan li bajarên din jî cihên we hene?**

Em tenê li Berlînê kar dikin.

**Li Berlînê çend buroyên we hene? Hûn dixwazin li Kurdistanê jî kar bikin?**

Li taxa Neukolnê sê, li Kreuzbergê du û li taxa Reinickendorfê du buroyên me hene. Em ê pirr kêfxweş bibin dema em rojekê li Kurdistanê ji bo ciwanên Kurd dest bi projeyekê bikin. Em dixwazin sala bê dema Newrozê de, ligel karkerên Evin e.V. ji bo hefteyekê serdana hinek bajarên Kurdistanê bikin.

> **Em ê pirr kêfxweş bibin dema em li Kurdistanê dest bi projeyekê bikin.**

**Bi qasî diyar e, karsaziya we biserketî ye, gelo hûn dikarin çi bêjin?**

Ez bawer im ku heta niha bi karên sosyalê, li malbat û dibistanê de me pirr tiştan pêş ve biriye. Ez dikarim bêjim ku karê ku me daye li ser milê xwe, me bi pirranî biserketî bi dawî aniye.

**Pêşniyarên we çi ne?**

Ne tenê çareserkirina pisgirêkên malbat û ciwanan, herwiha em dixwazin nimûneyekê ji bo perwerda zarokan jî pêk bînin. Perwerda zarokan pirr girîng e û ji bo wê xebat divê, loma em dixwazin û hêvî dikin ku em pêşerojê de hêlînek ji bo zarokan ava bikin û dibistanekê bi perwerda çanda multî (pir kulturî) vebikin. Dema em armanca xwe bicih bînin, êdî em dikarin ji civakê re bêjin ku ji bo perwerda zarok û ciwanan alternatîfek din jî heye.

***Hevpeyîn: Ciwan Tengezar***

## Strasbourg


Wêne: ANF

# Strasbourg bi rengên Kurdan xemilî

**Strasbourg (Rûdaw) -** Bi mebesta protestokirina girtina Serokê PKKê Abdullah Ocalan a di 15ê Sibata 1999ê de û daxwaza statuyeke siyasî ji bo Kurdan, 18ê Sibatê bi deh hezaran Kurdên ji welatên Ewropayê yên weke Almanya, Fransa, Belçîka û Hollanda li bajarê Fransayê Strasbourgê li hev kom bûn. Li gor organîzatorên meşê beşdarbûna îsal ji ya salên berê zêdetir bû. Mîting li qada "Rue des Vanneau" hat li dar xistin û peyama Serokê Konseya Rêveber a KCKê Mûrat Karayilan jî hat xwendin.

Dîsa li bajarê Strasbourgê komek ji zêdetirê 50 ciwanên Kurd bi posterên Abdullah Ocalan û alên PKKê ketin hundirê avahiya Konseya Ewropayê û xwestin balê bikşînin ser rewşa Abdullah Ocalan û bêdengiya welatên Ewropayê. Di encama mudaxeleya polîsan de 45 ciwan hatin binçavkirin.

# Polîsê Belçîkayê 60 Kurd binçav kirin

**Azad Kurdî** Bruksel

Zêdeyî 300 polîsên belçîkî li bajarê Anvers êrîşî ser Kurdên Bakurê Kurdistanê kirin û 60 ji wan binçav kirin. Yek ji Kurdên binçavkirî bo Rûdaw: "Dibe îstixbarat û rapora nerast a sîxurên tirk bûbe sedem ku êrîşî ser me kiribin."

Kurdên ji Bakurê Kurdistanê ên li bajarê Belçîkayê Anvers (Antwerpen) ku hejmara wan zêdeyî 3 hezar tê texmînkirin, daxwaza meşeke sivîl ji bo bîranîna 15ê Sibatê, salvegera girtina rêberê PKKê Abdullah Ocalan, kiribûn. Lê polîsên Belçîkayê destûra meşê neda, ji ber egera çêbûna pevçûn û aloziyan bi Tirkên heman bajarî ku hejmara wan derdorê 10 hezar e. Kurdên Bakur li Anvers ku di çarçoveya komeleke kurdî ya girêdayî PKKê de kar dikin, nekarîn ji ber destûrnedana polîs meşa 15ê Sibatê rêve bibin, lê di heman rojê de zêdeyî 300 polîsên belçîkî êrîşî komela Kurdan kirin û 60 Kurd binçav kirin.

Şahidekî bûyerê û yek ji binçavkiriyan, Kenan Basto di vê bareyê de daxuyanî dan Rûdawê û got: "Me ji Şaredariya Anvers daxwaza meşeke sivîl kiribû bo 15ê Sibatê, lê bi bahaneya ku alozî û pevçûn di navbera me û Tirkan de dernekeve, destûra meşê nedan me." Kenan eşkere kir ku wan ti meş û çalakiyek nekiribû, lê dema zêdeyî 60 Kurdên Bakur 15ê Sibatê di komela wî bajarî de dicivin, ji aliyê polîsan ve tên binçavkirin.

Li gor axaftina Kenan, zêdeyî 300 polîsên belçîkî di vê operasyonê de beşdar bûn û komela Kurdan dorpêç kirin. Derbarê sedemên vê binçavkirina bikom a Kurdan de, Kenan got: "Belkî îstixbarat ji aliyê Tirkên nijadperest li Anvers yan Bruksel ve hatibe dayin û ev qas zêde polîs rijiyan ser komela me û em hemû binçav kirin. Me ti çalakiyek nekiribû û em li dora hev civiyabûn." Piştî çend seatan her 60 kesên binçavkirî bi hev re hatin azadkirin.


Wêne: Rûdaw

Bi baweriya Kenan, Tirkên ku li Belçîkayê û welatên din dijîn, zêde şopa nijadperestî û polîtîka înkar û imhaya gelê Kurd dimeşînin û dijî xwestekên sivîl û demokratîk ên Kurdan derdikevin. Ev çalakvanê siyasî yê Bakurê Kurdistanê dibeje ku ew naxwazin qet pevçûnên wan bi Tirkan re çêbin, lê ew zêde aloziyan pêk tînin û ew jî ji neçarî bersiv didin: "Em dixwazin ji bo dabînkirina azadî, aşitî, demokrasî û edaletê li Tirkiyeyê bi wan re çalakiyan jî bikin, lê mixabin aliyê tirk naxwazin û zêde tundûtûjiyan tercîh dikin."

Kurdên Bakurê Kurdistanê li çend bajarên Belçîkayê bo şermezarkirina 15ê Sibatê, salvegera girtina rêberê PKKê Abdullah Ocalan, meş li dar xistin. Ew dixwazin bi meşên xwe siyaseta dewletên Ewropayê ji bo piştgirîdana Tirkiyeyê şermezar bikin û bi meşên xwe wan hişyar bikin ku dest ji vê piştgiriyê berdin.


Wêne: Rûdaw

**Hatice Çoban:** Kurd li Ewropayê li gor îmkan û derfetên xwe meş û çalakiyan li dar dixin û tevdigerin, tenê ev ji dest Kurdan tê.

### Helwesta welatên Ewropayê

Çalakvanê siyasî Kenan diyar kir ku piştgiriya welatên Ewropa û Amerîkayê bûye sebeb ku şer heta niha li Bakurê Kurdistanê dom bike û Pirsa Kurd bê çareserî bimîne. Herçiqas Kenan zêde bi guherîna siyaseta welatên Ewropayê li hemberî Tikriyeyê ne geşbîn û dilxweş e, lê tekez dike: "Emê çalakî û zextan heta serkeftina daxwazên xwe bicîh bînin û peyama xwe bigihînin welatên Ewropayê. Piştgiriya wan sebebê berdewambûna şerê niha li Bakurê Kurdistanê ye û Kurd bûne qurbaniyê siyasetên aborî û berjewendiyên din ên welatên Yekîtiya Ewropayê li hemberî Tirkiyeyê."

Çavdêrên siyasî jî bawer in ku ev çalakiyên protestokirinê yên Kurdan zêde bandorê li ser helwestên welatên Ewropayê li hemberî Tirkiyeyê nakin, ji ber ku welatên Ewropayê zêde bal û giringiyê didin peywendiyên aborî û dan û standinên xwe ligel Tirkiyeyê. Nûnera BDPê li Brukselê Hatice Çoban di vê bareyê de ji Rûdawê re ragehand: "Kurd li Ewropayê li gor îmkan û derfetên xwe meş û çalakiyan li dar dixin û tevdigerin, tenê ev ji dest Kurdan tê." Bi baweriya Hatîce Çoban, welatên Ewropayê zêde destekê didin Tirkiyeyê, ligel ku demokrasî ji bo Kurdan li Tirkiyeyê tune û mafên Kurdan bi awayekî sîstematîk tên binpêkirin û girtina çalakvanên siyasî û sivîl berdewam e.

Beriya du mehan li bajarê Anversê Belçîkayê pevçûnên xurt di navbera xwepêşanderên Kurd û Tirk de rûdabû. Di van pevçûnan de ku heftiyekê dom kirin, çend Tirk hatibûn birîndarkirin û gellek ziyan û zerarên darayî gihiştibû mal, dikan û komelên herdu aliyan.

# Lijneya *Olompiyada Kurdistanê* li serokekî nû digere



**Hewlêr –** Roja duşemê Berpirsê Desteya Kargeriya Mekteba Siyasî ya Yekîtiya Niştimaniya Kurdistanê Mela Bextyar dest ji serokatiya Lijneya Olompiyada Kurdistanê berda û biryar e hefteya bê kesekî din ji bo wê postê bê hilbijartin.




Li gor nûçeyek AKnewsê Berdevkê Lijneya Olompiyada Kurdistanê Herbî Xalid dest berdana Mela Bextyar ji wê postê piştrast kir û ragihand, "Dest berdana Bextyar ji wê postê ne bi sedemeke siyasî bû, ji beriya 2 salan ve wî dixwast dest ji wê postê berde, lê me qebûl nedikir, û ji wê demê ve jî wî gellek arîşeyên Olompiyada Kurdistanê çareser kirine".

Herbî Xalid got ku ew niha hewl didin ji bo posta serokatiya Lijneya Olompiyada Kurdistanê kesekî din hilbijêrin.

Herbî Xalid amaje pê da ku hefteya pêşiya me li Hewlêrê Mela Bextyar wê bi werzişvanan re civînek fireh saz bike û xatirê xwe ji wan bixwaze, Xalid berdewamî got, "Heman rojê jî kesek din wê ji bo posta serokatiya Olompiyada Kurdistanê bê hilbijartin."

Lijneya Olompiyada Kurdistanê di sala 2006ê de hatiye damezrandin, wek dezgeheke berpirs û peywendîdar organîzasyona hemû çalakiyên werzişiyê yên Herêma Kurdistanê dike.

## Bundesliga di çar koman de dabeş bû

# Dortmund dîsa dibe şampiyon?




Lîga Almanya ya futbolê li gor pûanan di çar beşan de kom bûye. Li gor encamên hefteya 22. Borussia Dortmund lîderê lîgê ye.

Tîmên lîga yekemîn ya Almanyayê li gor pûanên xwe di taybelleyê de bûne çar kom. Koma yekemîn berendamên şampiyoniyê ne û tê de çar tîm cih digirin. Borussia Dortmund, B. Monchengladbach, Bayern û Schalke. Şampiyona sezona borî ya Bundeslîga Borussia Dortmund dîsa yek ji girîngtirîn favoriyê şampiyoniya vê sezonê ye. Piştî maçên hefteya 22. pûanê Borussia Dortmundê 49 in û lîder e. Li dû B.Dortmundê Borussia Monchengladbach tê û pûanên wê 46 in û di rêza sêyemîn de Bayern Munchen tê ku pûanên wê 45 in. Schalke jî di koma tîmên berendamên Lîga Şampiyonan de ye û pûanên wê jî 44 in.

Koma duyem berendamên Lîga Ewropayê UEFA ne û Bremen (36), Leverkusen (34) û Hannover (34) hev dişopînin. Di koma sêyem de 7 tîm hene ku pêwîst e hewl bidin da ku danekevin an jî dibe ku şans bidestbixin bo beşdariya Lîga Ewropayê. Ev jî: Wolfsburg, Stuttgart, Hoffenheim, Hamburg, Nurnberg, Mainz û Koln û Berlîn e. Pûanên wan di navbra 27 û 20 de ne. Tîmên herî jêr ên di rêzên xeterê de cih digrin jî ev in: Kaiserslautern, Ausburg û Freiburg. Ev her sê tîm jî xwediya 18 pûan in.

M= Maç, S= Serkeftin, W= Wekhevî, T= Têkçûn, G= Gol, P= Puan

| | Tîm | M | S | W | T | G | P | | | | | | |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1. | Dortmund | 22 | 15 | 4 | 3 | 47:14 | 49 | ? | S | S | S | S | S |
| 2. | Moenchengladbach | 22 | 14 | 4 | 4 | 36:13 | 46 | ? | S | S | W | S | S |
| 3. | Bayern | 22 | 14 | 3 | 5 | 49:14 | 45 | ? | W | S | W | S | T |
| 4. | Schalke | 22 | 14 | 2 | 6 | 50:28 | 44 | ? | S | T | W | S | S |
| 5. | Bremen | 22 | 10 | 6 | 6 | 37:36 | 36 | ? | S | W | W | W | W |
| 6. | Leverkusen | 22 | 9 | 7 | 6 | 32:29 | 34 | ? | S | T | W | W | S |
| 7. | Hannover | 22 | 8 | 10 | 4 | 27:27 | 34 | ? | S | W | S | S | W |
| 8. | Wolfsburg | 22 | 8 | 3 | 11 | 27:42 | 27 | ? | T | S | W | T | S |
| 9. | Stuttgart | 22 | 7 | 5 | 10 | 33:32 | 26 | ? | T | S | W | T | T |
| 10. | Hoffenheim | 22 | 6 | 8 | 8 | 24:26 | 26 | ? | W | W | W | T | W |
| 11. | Hamburg | 22 | 6 | 8 | 8 | 27:37 | 26 | ? | T | S | W | S | T |
| 12. | Nürnberg | 22 | 7 | 4 | 11 | 21:32 | 25 | ? | S | W | T | T | S |
| 13. | Mainz | 22 | 5 | 9 | 8 | 30:36 | 24 | ? | W | W | W | S | T |
| 14. | Köln | 22 | 7 | 3 | 12 | 30:43 | 24 | ? | T | T | S | T | T |
| 15. | Hertha | 22 | 4 | 8 | 10 | 25:37 | 20 | ? | T | T | T | T | T |
| 16. | Kaiserslautern | 22 | 3 | 9 | 10 | 16:28 | 18 | ? | T | T | T | W | W |
| 17. | Augsburg | 22 | 3 | 9 | 10 | 20:37 | 18 | ? | T | W | W | W | T |
| 18. | Freiburg | 22 | 4 | 6 | 12 | 27:47 | 18 | ? | W | T | W | T | S |

## Di derbiya Kurdistanê de Riha biserket

Dawiya hefta borî di Lîga 2.de du tîmên Bakurê Kurdistanê Şanliurfaspor û Diyarbakirspor li Rihayê hatin himberê hev. Maça derbiyê bi serketina tîma Rihayê bi encameke bêhempa 4-0 bi dawî bu. Di lîga duyemîn de Şanliurfaspor ji bo şampiyoniyê têdikoşe, Diyarbakirspor jî di rêza 15.de cih digire û hewl dide xwe ji daketina lîgê xilas bike. Hefta pêşiya me Diyarbakirspor di saheya xwe de ligel Çorumsporê dileyîze û ji bo ji lîgê danekeve divê vê maçê bistîne.




Cara ewil li ser çiyayekî bi berf, li deverekî ku ti kes nas nake, di şeveke pîrozbahiya şervanên azadiyê de min dengê Sakineyê guhdar kiribû. Di vê nevberê de gellek sal derbas bûn, lê ez he jî dema ku wê guhdar dikim dîsa diçim serê wan çiyayan. Di klameke wê de hûn dibin dayîk ku li çiyayan li zarokê xwe digere, di klameke wê ya din de hûn dibin bûkek ciwan ku dibe qurbana paşverûtiye, di yeka din de hûn dibin Sema ku di lêgeriya azadiyê de xwe bi agir şewitand. Piştre hûn dibin 'Çendî heme jibîr naçe Berîtana min' û ber bi azadiyê ve dimeşin. Sakine Teyna bi yekem albuma xwe ya solo ya bi navê "Roye mi" di hunerê de rûpelek nû vedike. Em pê re derbarê albuma wê de axivîn û me jê pirsî ka bi kîja ked û fikiran, bi çi hestan vê albumê amade kiriye û dixwest çi bîne ziman...

**Projeyek te ya bi navê Trio Mara hebu, herwiha komeke muzîkê bû. Çi bû ev?**

Belê ji mêjve projeyek mi hebû ku ji jinan ez komek muzîkê damezrînim. Lê heta ku min hevalên xwe yê niha nas nekiribû, nekarî komek wiha damezrînim. Trio tê wateya sê kesan, peyva Mara jî me bi taybetî hilbijart. Mara bi zaravayê kirmanckî ango bi zazakî tê wateya 'Ji me' ev peyv herwiha tê wateya dayîkê. Di erebî de wateya Mara jin e; di ermenîkî de jî dayîk e. Jiber ku di gellek zimanên herêma me de tê wateya jin û dayîkê, me ew hilbijart. Di koma Trio Mara de Nurê Dilovanî kemanê lê dixe, Nazê Îşxan piyanoyê lê dixe ez jî vokalîst im.

**We kengê dest bi karê komê kir?**

» Trio Mara di navbera muzîka gelêrî ya kurdî û ya gerdûnî ya nûjen de harmoniyek çêdike

Sakine Teyna

**Bi giranî di repertûara we de muzîka bi çi rengî heye?**

Projeya Trio Mara di meha adara borî de dest pê kir. Me konsera xwe ya yekem di Roja Jinen Cîhanê de li dar xist. Ango ev bû nêzîka salekê em xebatên xwe berdewam dikin. Trio Mara di aliyê mizîkaliyê de naveroka muzîka kurdî ya klasîk û gelêrî diparêze û bi vêya têr nabe, harmoniyekî ligel muzîka gerdûnî û ya nûjen çêdike. Di repertûara me de ligel muzîka klasîk ya ku ti carî kevin nabe, muzîka ku me bi xwe amade krie jî heye û hinek jî muzîkên din.

**Mirov dikare bêje ku koma we êş, evîn û koçberiyên jinan tîne ziman?**

Li welatê ku em jê tên, li Kurdistanê êş, şer û berxwedan qet kêm nebûne. Em weke çend jin, hewl didin bûyerên ku li cografyaya me rûdanê, bînin ziman. Gellek hunermendên jin yên ku dengbejiyê dikirin, di nava kevneşopiyan de rastî gellek zehmetiyan hatin. Ligel gellek zehmetî û astengiyan helwêsta dengbêjên weke Eyşe Şan û Meryem Xanê gellek bi wate bû. Em hewl didin ku bibin ziman bo berfînên ku di tekoşîna azadiyê de li ber xwe dane, keçikên ciwan yên neçar ku di bihara temenê xwe de bûne bûk, Ceylan û Ugurên ku bûne qurbana şer. Ango em dixwazin bibin deng û rengê jiyana Kurdan.

**Gelo amadekariya albumê Çawa bû? Kê alîkarî dane we?**

Albuma Roye Mi projeya min a solo ya yekem e. Bo min weke rêwîtiya jiyanê derbas bû. Endamên koma Trio Mara bi deng û enstrumanên xwe alîkariya min kirin; bi rastî jî em rastî gellek zehmetiyan hatin. Aranjor û derhênerê albumê Erdem Beyazgul, birayê min e û weke ku bi ta û derziyê binexşîne, jêrxaneya albumê amade kir. Mehmet Akbas bi dengê xwe, Yasin Boyraz bi bilûr û ramanên xwe alîkarî dan albumê. Roye Mi careke din bi min da nasîn ku dostanî di rojên zehmetiyan de, li pêşberê astengiyan xwe diyar dike.

**Gellek hunermendan strana Berîtanê gotin, lê di albuma te de cudahiyek vê stranê heye. Gelo wateya Berîtanê çi ye bo te?**

Berîtan, şervaneke azadiyê ye. Ez wê ji nêzîk ve nas dikim, me bi hev re xebat kiriye, lewma ev stran bo min taybet e. Dema ez vê stranê dibêjim ez bi wê re diçim wan rojên berê yên ku me bihev re derbas kiribûn û bo min dibe nostaljî. Dema ez stranê dibêjim, ez bi Berîtanê re dijîm. Hevalê min ê hêja, derhênerê fîlmê Berîtanê, Halil Uysal di fîlmê xwe de vê strana min bi kar aniye, ev jî bo min şanazî ye.

**Wateya "Roye mi" çi ye û çima te ev nav li albumê kir?**

Roye Mi, di zaravayê kirmanckî de tê wateya 'Rihê min' herwiha di albumê de stranek bi vî navî heye. Ev album hemû birîn, êş û ruxandinên nava dilê min nîsan dide; pirr bi zehmetî derket holê, tê de hemû hêviyên min jî hene, lewma min navê Roye Mi lê kir.

**Gelo sedem çi bû ku te bi sê zaraveyan stran gotin?**

Ev hilbijartineke taybet e bo min. Ez dikarim bi her sê zaraveyan jî bêjim û min xwest bi her sê zaraveyan jî stran hebin.

***Hevpeyvîn: Medya Deniz***

***www.sakinateyna.com***
***www.mara-trio.com***

# Semakarên Bollywoodê bi govenda kurdî şaş man

**Nasir Nihêlî** Hindistan

Li salona zanîngeha Puna, li herêma Miharaştra, li başûrê paytexta Hindistanê New Delhiyê, xortên Kurd bi cilûbergên kurdî tevlî stranên lezgîn yên kurdî ketin nav reqis û govenda kurdî û amadebûyên li salonê yên ji neteweyên cuda coşadin. Tevgera xurt û govendgirtina semakarên Kurd bû cihê balkişandina tevahiya amadebûyan.

Zanîngeha Puna zanîngeheke hikûmî ye, lewra reftareke resmî ligel xwendekarên wergirtî dike ku ji hemû welatên dinyayê tên vî bajarî. Lê xwendekarên Kurd nekarîn bi ala Kurdistanê herin wê ahenga ku roja 11.02.2012ê hat sazkirin, ji ber ku zanîngeh wek xwendekarên Îraqî ligel xwendekarên Herêma Kurdistanê jî tevdigere ku li vê zanîngehê dixwînin. Lê "Grûba Kurdî" wek nav qebûl dikin.

Xwendekarên Kurd bi wê yekê dilgiran bûn ku rê li ber ala Kurdistanê hat girtin, ji ber ku nedixwestin ala Îraqê ji dêvla ala Kurdistanê bilind bikin. Nêzîka 2 sala ye ku hejmareke xwendekarên Kurd li Hindistanê dixwînin û bi berdewamî hejmara wan zêde dibe. Tenê li zanîngeha Puna 150 xwendekarên Kurd hene. Ev xwendekar aheng û seyranên zanîngehê bo nîşandana çanda kurdî wek derfet bikar tînin.

Tariq Hemeemîn xwendekarê masterê ye li zanîngeha Beharati. Ew ji Başûrê Kurdistanê çûye Hindistanê û dibêje ku di sala 2010ê de gava ahenga hevnaskirinê bo xwendekaran li zanîngehê hat sazkirin, karîbûn beşekî çanda kurdî bidin nasîn. Ew heya niha tevlî sê aheng û helkeftan bûne: "Di ahengan de em bi cilûberg û ala Kurdistanê beşdar bûne, heya niha pêşwaziyeke baş li me hatiye kirin. Lewra di Tebaxa 2011ê de bi awayekî resmî em hatin vexwendin bo ahenga mezin a zanîngeha Beharata ku nêzîka 30 grubên stranan ên hindî tê de beşdar bûn, ku van grûban rol di fîlmên navdar yên Bollywoodê de jî lîstine."

Bo welatekî wek Hindistanê ku sema û reqsa wan li seranserê cîhanê navdar e, xwediyên semaya tije tevger û gellekî xurt û balkêş in, ne hêsan e ku grûbeke biyanî ku bo xwendinê hatibin Hindistanê, bibe cihê şaşmayîna rûniştiyan. Lê grûba xwendekarên Kurd dibêje ew bûye cihê balkişandina Hindiyan û navdariyek ji govenda kurdî re çêkirine.



# Senaryoya fîlmê Helebçe 4 mehên din amade dibe

» Kirmizigul niha senaryoya fîlm dinivîsîne û produksiyona fîlm jî ji aliyê Murat Tokat ve tê kirin.

**Hêmin Xoşnaw**

Derhênerê fîlmê Helebçe ku biryar e Mahsûn Kirmizigul berhem bîne, dibêje wî negotiye ku Julia Roberts, Angelina Jolie û Salma Hayek di fîlm de rol bileyîzin.

Produktorê fîlmê Helebçe Murat Tokat ji Rûdawê re ragihand, senaryoya fîlm dibe ku heya 4 mehên din xilas bibe, ew niha ligel amadekirina senaryoyê ji bo komkirina belgenameyên komkujiya Helebçe jî kar dikin.

Kişandina fîlmekî li ser Helebçe piştî derbasbûna 24 salan di ser kîmyabarankirina bajêr re tê. Ev ne yekem fîlm e ku li ser karesata wê bajarî hatibe çêkirin; lê belê cara pêşî ye hunermendekî kurd ji Bakurê Kurdistanê li ser kişandina fîlmekî taybet û dirêj di vî warî de kar bike.

Produktorê fîlmê Helebçe Tokat derbarê ramana fîlmê xwe dibêje: “Çend sal in ramana vî fîlmî di mejiyê Kirmizigul de cih girtiye. Bi baweriya Mahsun hê jî cîhan nizane li Helebçe çi rû daye. Lewma hewl dide rewşa nifşê piştî karesata 1988 bigihîne raya giştî ya cîhanê.”

Rojnameya Sabah a tirkî, nûçeya kişandina fîlmê Helebçe belav kir û nivîsand ku stêrkên sînemayê yên wek Julia Roberts, Angelina Jolie û Salma Hayek jî tê de beşdar bin. Lê Tokat got: “Min tiştekî wiha negotiye, lê ji ber ku ev fîlm bo hemû cîhanê tê nîşandan û peyamên wê aliyên mirovî lixwe digirin, herwiha da ku cîhan bizanibe li Helebçe çi qewimiye, divê çend aktorên navdar ên cîhanê tê de beşdar bibin.”


Mahsun Kirmizigul


Murat Tokat

Tokat naxwaze niha navê wan aktoran kifş bike ku biryar e di fîlmê Helebçe de rol bilîzin: “Heya senaryo xilas nebe ne ew aktor diaxivin û ne jî em daxwazê ji wan dikin. Dibe ku hinek j iwan navên ku hatine behskirin tevlî fîlm bibin.”

Mahsûn Kirmizigul û Murat Tokat bi hev re fîlmê ‘Li New Yorkê 5 Minare’ çêkirin, ku di nava hunera sînemayê de navdariyeke baş j iwan re peyde kir, lewra tê çaverêkirin fîlmê Helebçe jî pir deng bide, herwiha herduyan şîrketa Boyut bo berhemanînê damezrandine ku heya niha çend fîlm berhem anîne wek (Guneşi Gordum?, Romantik Komedi, Gecenin Kanatlari û New York'ta Beş Minare).

Murat Tokat got: “Em dixwazin hemû kitekirên fîlmê Helebçe bigihînin cîhanê. Em hewl didin sedemên derketina wê karesatê ku ji hebûna pirsa kurd bingeh girtine beloq bikin.” Herwiha derbarê cudahiya fîlmê Helebçe û Li New Yorkê 5 Minare got: “Çîrokên wan cihê ne, lê naveroka herduyan qala bextreşî û derdeseriyên mirovatiyê dikin.”

### Kirmizigul diçe Silêmaniyê

Her çiqasî rojnameyên Tirkiyeyê nûçeya çûyîna Kirmizigul bo Silêmaniyê xistibûn piştî vegera Talabanî bo Silêmaniyê ku wê demê bo dermankirina nexweşiya xwe li Almanyayê bû, lê Murat Tokat bêyî ku ronkirineke zêde bide li ser serdana Kirmizigul, got: “Piştî xilasbûna senaroya fîlm dibe ku Mahsûn serdana Silêmaniyê bike.”

# Pesnê rêzefîlmên tirkî dikin, rexne li aktorên Kurd dikin



**Rûdaw (Silêmanî) -** Hunermendên Kurd di warê aktoriyê de, ala spî bilind kirine û dibêjin, ew nikjarin şerê vê serdema zêrîn a dramayê bikin, hunermendekî Silêmaniyê jî dibêje: “Eger em bêrîkvala bin, çavlirêya çi ji me tê kirin?”

Yek li dû yekê, dramayên tirkî bihêztir tên pêş, her şevekê “Evîneke Qedexekirî” û “Jinên Şaşmayî” û çend rêzefîlmên din, rûdêmê bername û programên televizyonên kurdî ji xelkê vedişêrin.

Rojgar Cemîl (23), li dikana CD firoşekî Silêmaniyê, dixwaze hemû xelekên rêzefîlmê Salên Dûriyê bi hev re bikre û dibêje: “Heya ku rêzefîlmekî tirkî hebe, li ti fîlmên erebî û kurdî nanêrim.”

Rojgar dibêje, sedemê xirabî û lawaziya rêzefîlmên kurdî vedigere aktoran bi xwe: “Tevgera wan ne asayî ye û ron e, derhênana wan qels e, heya ku ken û giriyê wan jî ne asayî ye.”

Sîver Mihemed, dibêje qet ji dîtina rêzefîlmên tirkî têr nabe û lewma dixwaze rojekê here Tirkiyeyê: “Zehf dixwazim rojekê dramaya kurdî jî bigihije ast û xweşiya ya tirkî.” Sîver ji derhêner û aktorên Kurd dipirse: “Gelo dikarin rêzefîlmekî wek Evîneke Qedexekirî çêkin? Ger wiha bidome, kanalên me bi doblajkirina rêzefîlmên tirkî re nagihîne.”

Hersê kanalên MBC 1 û 2 û Drama, û hinek kanalên erebî yên din jî, ekranên xwe bi rêzefîlmên tirkî germ kirine û herwiha kanalên navxwe yên Herêma Kurdistanê jî, deriyên xwe ji wan re li ser piştê vekirine, ji destpêkê ve hunermend û aktorên Kurd gilî dikirin ku hunera biyanî tê pêşwazîkirin, lê niha ku wê hêz û xweşiya hunerî li pişt bandora dramaya biyanî dibînin, gotineke din dikin.

### Sedem: Nebûna pere û piştgiriyê

Hunermend Omer Dilpak, di çend rêzefîlmên kurdî de rola serekî lîstiye, “nebûna pere û piştgiriyê” wek sedemê berçav yê lawaziya hunera dramaya kurdî li Herêma Kurdistanê dibîne û dibêje, “hunermendên me her yek hewl dide pariyekî nan bidestve bîne û bixwe. Li vir divê hunermend li deriyê sed berpirsan bide heya ku tiştekî bidest bixe û karekî seqet pê bike.”

### Rexneyên psîkologan hene

Ew jiyana xwe dike mînak û dibêje: “Divê ji sibehê heya êvarê bilivim heya du pariyan ji mala xwe re peyde bikim, êdî bi çi îş bikim û bikarim herim derve û du derhênerên biyanî bibînim û ezmûnekê peyde bikim û karekî baş bikim. Di vê rewşê de na be kes çavlirêya karên mezin ji te bike.”

Dramaya tirkî, ku bi rêya gruba kanalên MBC li welatên erebî û Rojhilata Navîn hat naskirin, pêştir nikaribû sînorê Tirkiyeyê derbas bike, lê di van çend salên dawî de wisa kir hejmara tûrîst û kesên ku dixwazin herine Tirkiyeyê pir zêdetir bibe. Lê ji ber lawaziya naveroka hinekan û rexneyên zêde yên psîkologan, dijberiyeke wan a zêde jî heye.

Mahir Hesen, serketina aktor vedigerîne wê yekê ku ligel diyalog û lîstina rolê de hestên xwe jî baş amade bike û bi tevahî girêdayî wê dinyayê be ku rolê tê de dilîze: “Lê aktorê me tenê diyalogê ezber dike û davêje, ji wateya diyalogê fêm nakin. Xelk ne neheq in gava li dramaya tirkî dinêrin, gava tu li wan dinêrî tu dibêje qey qet wisa dernakevin ku aktoriyê dikin.”

# ‘Li Moskowê Kurdek heye, lê ne Kurdê Sovyetê ye, jê re dibêjin Mistefa Barzanî!’


Wêne: Rûdaw

Nadir Nadirov, roja 80 saliya wî di 2012ê de

**Salihê Kevirbirî** Alma Ata

Prof. Dr. Nadirê Kerem ku li seranserê dinyayê wekî Nadir Nadirov tê naskirin, meha derbasbûyî 80 saliya xwe pîroz kir. Ew bi xwe Kurdekî ji dorhêla Wanê, ji Eşîra Birûkan e. Hê gava bavê wî Keremê Hacî Nadir ciwan e, malbat, qewim û eşîra wî, piştî şikestina Şerê Şêx Seîd, di navbera salên 1925-1926’an de ji ber zilma Roma Reş bar dikin têne ber Çemê Arasê. Xwe li Arasê dixin, derbasî hêla Nexçîvanê dibin ku di bin hikûmdariya Sovyetan de bûye. Li wê derê gundekî Beşka ji xwe re ava dikin. Navê wî ‘Qîqaç’ datînin. Di sala 1937ê de, gava ku 5 salî ye, di şevekê de ber bi Asya Navîn ve têne sirgunkirin. Piştî sirguna 2 mehên di trênan de, şeveke ku çokek berf li erdê ye, li nav çola Qazakistanê têne peyakirin. Ji wê rojê ve li wê derê dijîn.

Nadirê Kerem ji ber ku Kurdekî sirgunê ye, di warê xwendinê de zehmetiyên giran dibîne. Pêşî nahêlin ji gundekî here gundekî din. Paşê destûra xwendinê didin, lê tenê ji bo bajarên biçûk. Paşê her ku di xwendina xwe de bilind dibe, divê here bajarên mezin û paytextan bixwîne, lê ji ber ku xwendina li paytextan jî jê re qedexe kirine, ji neçarî diçe ser sînorê Asya Dûr û Japonyayê dixwîne. Di sala 1956ê de, bi hatina Kruşçev siûda wî dişixule. Astengiyên li ber xwendina wî û bi hezaran kesên wek wî radibe. Rêya çûna Moskowê jê re vedibe. Helbet ev jî dibe sedem ku li wê derê 2 Kurdan nas bike ku yek ji wan Mele Mistefa Barzanî ye. Li Alma Ataya Qazakistanê me xwest ku ew ji me re behsa serpêhatiya xwe û Mele Mistefa Barzanî bike. Bêyî ku ez dest bidim axaftina wî, ev serpêhatiya hanê derket holê:

“Sala 1956ê Sekreterê Dewleta Sovyetê Kruşçev bû. Biryar da ku mamoste hemû azad bin. Wî Stalîn rexne kir. Got, ‘Mamoste zarokên me didin xwendinê, hîn dikin, lê em nahêlin ku ew ji gundekî herin gundekî din.’ Ev rewşa xerab a mamosteyan ji holê rabû. Di pasaportê de hatibû morkirin ku mafê filankes tune ye ji gundê xwe derkeve. Piştî ku ev biryar derket, ez çûm min pasaporta nû stand. Pasaporta bê mor! Êdî min berê xwe da Moskowê. Ez ji wir hatim Alma Atayê ku bikevim karê bilind. Ji min re gotin; ‘Kesek tenê lazim e, lê emê ji miletê xwe (Qazax) hildin. Dixwazî belgeyên xwe bide, lê tê derbas nebî.’ Rabûm çûme Bişkekê. Li wir jî ji min re wiha gotin. Min got; ‘De baş e heyran, ez ne Qazax im, ne Qirxiz im lê ez dixwazim li pey ilm herim, ka ez bi ku ve herim?’ Gotin; ‘Wa Moskow a te ye!’ Min dîsa berê xwe da Moskowê. Sala 1956ê li Moskowê ji bo teza xwe ya xwendina bilind ketim zanîngehê. Wek kesekî mêrxas, bextewar, Kurd, Moskow û teza doktoraya bilind!

### “Bila dengê kurdî vizevizê ji telefonên Moskowê bîne...”

Min destpê kir geriyam, ka li Moskowê Kurd hene an tune ne. Kitêbxaneyeke bi navê Lenîn heye. Ez çûm wir. Gellek mezin e. li Sovyetê kesê ku bixwaze tiştekî hîn bibe, her cûre kitêban bixwîne, tê wê derê. Ez çûm min li wir beşê kitêbên kurdî dît. Zêde tune bûn. 10-15 kitêbên kurdî/li ser Kurdan hebûn. Kitêbên Kurdên Sovyetê bûn. Kitêba Heciyê Cindî hebû, kitêba Qanatê Kurdo hebû, kitêba Casimê Celîl hebû. Min dêhna xwe dayê jineke Rûs li wir rûniştiye. Min jê pirsî; ‘Kurd hene ku têne vê derê?’ Got; “Carcaran hinek Kurd hene, ji Ermenistan û Gurcistanê tên vê derê.’ Min dîsa jê pirsî; ‘Kesên ku li Moskowê dijîn hene?’ Got; ‘Li Moskowê bi tenê Kurdek heye, carcaran tê.’ Min got kî ye?’ Got: ‘Navê wî Kolosê Şero ye.’ Lê jinik jî nizane Kurdê ku derê ye. Tenê dizane li Moskowê dimîne, carcaran tê kitêbxanê rûdine kitêban dixwîne. Min got; ‘Tu adrês û telefona wî dizanî?’ Got; ‘Na, nizanim!’ Min got; ‘gava hat tu dikarî telefona wî ji bo min jê bistînî?’ Got; ‘Baş e, serçavan. 10-15 roj paşê were, ewê were vir!’

### “Em Kurdên Îraqê ne...”

Min bi ya jinikê kir. 10-15 roj paşê hatim kitêbxanê. Hatibû û jinikê telefona wî li ba xwe nivîsandibû. Telefona malê bû. Min ji Kolosê Şero re telefon vekir. Min bi rûsî silav dayê, kêf halê wî pirsî. Ji min re got; ‘Tu Kurd î?’ Min got; ‘Belê, ez Kurd im û ji Qazakistanê hatime, li Moskowê dixwînim.’ Got; ‘Tu bi kurdî dizanî an nizanî?’ Min got; ‘Dizanim!’ Got; ‘Madem wisa ye, bi kurdî biaxive, bila dengê kurdî vizevizê ji telefonên Moskowê bîne!’ Hevaltiya me berdewam kir. Kolos Kurdê Gurcistanê bû, parêzerî dikir, ne şaş bim demekê jî di Wezareta Karên Derve de kar kiriye. Bi emir jî, ji min mezintir bû. Rojekê ji min re got; ‘Kurdekî din jî li vir heye, lê ew ne Kurdê Sovyetê ye, Kurdê Îraqê ye. Navê wî jî Mistefa Barzanî ye!’ Sal 1957 e. Min ji Kolos re got; ‘Ez dixwazim wî bibînim û pê re xeber bidim.’ Kolos got; ‘Baş e.’ Wê gavê min nav û dengê Mistefa Barzanî nebihîstiye. Rojekê em li cihekî rûniştin, Me du-sê şûşe jî araq vexwar. Telefonek hat. Kesê li ser telefonê Mistefa Barzanî bû. Ji xeberdanên wî û Kolos ez pê hesiyam ku mirovekî mezin e. Ji ber ku Kolos di telefonê de bi hurmeteke mezin pê re xeber dida. Paşê telefon da min hal û wextê min pirsî, min got; ‘Baş im mala te ava.’ Piştî me telefon danî, Kolos got rabe emê herin cem wî.’ Min got; ‘Kolos me hinek vexwariye, şerm e. Em îro neçin.’ Min telefona wî ji Kolos stand. Çend roj paşê, min bi xwe jê re telefon vekir û got dixwazim werim cem te.’ Got; ‘Keremke were.’ Di apartmanekê de dima. Çûm cem wî. Pirs û pirsiyara min kir. Min yek bi yek rewşa xwe jê re got. Ji ku hatime, Kurdê ku derê me, niha çi dikim. Min bi kurtasî behsa jiyana xwe jê re kir. Wî jî behsa xwe ji min re kir. Got; ‘Em ji bo rizgariya Kurdan kar dikin. Em Kurdên Îraqê ne. Di sala 1946ê de em hatine. Pêşî em çûne Taşkenta Ozbekistanê. Niha qismekî ji me li Moskowê dijîn û li vir dixwînin. Me bi têra xwe bi hev re sohbetê kir. Paşê min destûra xwe jê stand, rabûm çûm.


Mele Mistefa Barzanî, 1952 li Sovyetê

Sala 1958ê, meha îlonê Kolos vegeriyaye Tiblîsê. Ez jî ketime dema bêhnvedanê. Li Ermenîstanê Nado Mehmûdov heye, ew xalê min e. Kurê xaltiya diya min e. Wezîfe û peywirên mezin di destê wî de hebûn. Diya min got; ‘eger tu têyî, di ser Êrîvanê re were, binêre halê Nado çi ye?’ Min jî got; ‘Ez pêşî herim Tiblîsê, Kolos jî bibînim.’ Tiblîs jî di navbera Moskow û Êrîvanê de ye. Ez çûm Tiblîsê, Kolos hate pêşiya min. Ez çend rojan li mala Kolos mam. Paşê min got; ‘Ez diçime Erîvanê.’ Kolos got; ‘Ez jî bi te re têm.’ Em bi taksiyê çûn.

### “Ez gellekî li ber xwe diketim...”

Em çend rojan li wir man. Xeberdanên me hemû li ser Mele Mistefa Barzanî û pêşmergeyên wî bû. Nado Mehmûdov got; ‘Hema beriya we bi çend rojan, Mele Mistefa Barzanî hatiye Erîvanê, li dora Çiyayê Elegezê di nav Kurdan de geriyaye, rewşenbîrên Kurdan ên wekî Mîroyê Esed, Eliyê Evdirehman û gellekên din ditine û ser Kurdistana Îranê re derbasî Kurdistana Îraqê bûye. Hemû bi metelî û heyranî behsa Barzanî dikirin. Emma ya jina Nado Mehmûdov Ermenî ye. Wê digot; ‘Nadircan, min gellek Kurd dîtine, lê min Kurdên wisa nedîtiye. Ji her alî ve, ew welatparêz bû, mêrxas bû, bi marîfet bû, zana bû.’

Ev meseleya min behs kir, Payizê pêk hat. Paşê Zivistan hat, me bihîst ku Kurdan li Îraqê serî hildane. Wê demê min di dilê xwe de wiha got; ‘Divê li Moskowê ez çend carên din biçûma serdana Barzanî. Ez gellekî li ber xwe diketim. Mixabin ku min careke din Mele Mistefa Barzanî nedît. Tenê ew car bû ku min li Moskowê dîtibû...”

### 905 donim zevî ji 22 projeyên tûrîzmê tên standin

# Pirsgirêka 8 projeyên tûrîzmê li dadgehê ye

**Şiwan Berzencî** Hewlêr

Pirsgirêka projeyên musatehe berdewam dike û çend dosyayên wan projeyan jî niha li dadgehan e. Ji bo şopandina pirsgirêka zeviyên ku dane tûrîzmê û hê jî kar di wan de nehatiye kirin ji aliyê serokayetiya Herêma Kurdistanê û wezareta şaredariyan ve çend komîte hatine damezirandin

Li gor biryara 7ê ya serokayetiya Herêma Kurdistanê, hemû zeviyên ku bi girêbesta musatehe ango kirêya heya demeke destnîşankirî hatibûn wergirtin û di dema yasayî de ji bo projeyên ku ji bo wan hatibûn wergirtin di wan de kar nehat kirin, girêbestên wan tên betalkirin. Herwiha cûreyê wan projeyên ku li ser wan hatine kirin lê naveroka girêbestên wan nagunce, ew jî tên betalkirin.



Melevanîgehek li nêzî Gola Dokan li parêzgeha Silêmaniyê

## Moleta hinekan betal bû

Her çiqasî 8 meh di ser wê biryarê re derbas bûne jî, lê kêşeya hinek ji wan zeviyan nehatiye çareserkirin. Li gor gotina çavkaniyeke agahdar ji wezareta şaredarî û geştûguzarê niha li wezareta şaredariyan û serokatiya Herêma Kurdistanê ji bo şopandina kêşeya zeviyên musatehe nemaze ew zeviyên ku bo projeyên tûrîstî hatibûn veqetandin, çend komîteyên din pêk hatine.

Rêveberê karûbarên yasayî li desteya geştûguzar Muhsin Hesen ji Rûdawê re ragihand: "Piştî biryara Serokê Herêma Kurdistanê bo encamdana reforman û şopandina zeviyên ku wek musatehe hatine dayin, me moleta hejmareke projeyan betal kir, lê kêşeya wan zeviyan didome û bidawî nebûye."

## 22 proje hatine hilweşandin

Navbirî kifş kir ku li sînorê wîlayeta Hewlêrê, Silêmaniyê û Dihokê 22 projeyên hilberîna geştûguzarê hatine hilweşandin (12 li Hewlêr, 8 li Dihok û 2 proje jî li Silêmaniyê), bi vî rengî jî zêdeyî 905 donim zevî hatine wergirtin. Hesen projeyên ku hatine hilweşandin wiha kifş kirin: "Çend motel, villa, holên ahengan, melevanîgeh û xwaringeh."

Pirraniya projeyên tûrîstîk ku li Dihokê hatin betalkirin li Serseng, Solav û derdora Dihokê bûn. Muhsin Hesen got: "Pirraniya wan projeyan di girêbestên wan de hatibû nivîsîn ku projeya tûrîstîk e, lê xaniyên penaberan li ser wan hatibûn avakirin."

Ji hemû 68 projeyên tûrîstîk heya niha 23 proje li Hewlêrê, 20 li Silêmaniyê û 10 li Dihokê xilas bûne. Hesen dibêje, ji bilî hilweşandina moleta wan çend projeyan, dosyayên çend projeyên din jî li dadgehê ne, ku yek ji wan li Hewlêrê ye û 7 projeyên din jî li Silêmaniyê ne. Navbirî dibêje, "moleta wan projeyan hatiye wergirtin, lê xwendiyên wan ne razî ne.

## Dadgehê hê biryar nedaye

Kêşeya wan li dadgehê ye û nehatiye yekalîkirin. Kêşeya 12 projeyên din ên tûrîstîk ku rêjeya xilaskirina wan ji aliyê komîteya lêkolînê biryara dawî li ser wan nehatiye dayin da ku moletên wan bên standin, 4 projeyên din jî ji ber kêmbûna şiyana veberhênerên wan daxwaza îstîfakirina wan hatiye kirin dikin."

Rêveberê şaredariyên Hewlêrê Îsmail Mihemed amaje da ku pirraniya projeyên geştiyarî yên hilweşandî di nava bajaran de ne: "Zevî bo projeyên tûrîstî bi musatehe dane xelkê, lê ti proje li ser wan nehatine avakirin." Endamê parlamentoya Kurdistanê ji komîteya şaredarî û geştûguzarê Serheng Ferec jî derbarê mijarê daxuyand: "Meseleya zeviyên musatehe ku ji aliyê serokayetiya Herêma Kurdistanê tê lêkolînkirin girîng û nazik e, lê mixabin heya niha parlamento nekariye bi awayekî ciddî wan bişopîne."

### Cîgirê Wezîrê Petrolê yê Îraqê bo Rûdawê:

# Kurd derbarê petrola Kurdistanê li dijî hev agahiyan didin Şehristanî

**Hewlêr (Rûdaw) -** Cîgirê Wezîrê Petrolê yê Îraqê Mutesem Ekrem ragihand ku hinek Kurd ji ber hevrikî û nakokiyên şexsî derbarê meseleya petrola Kurdistanê her agahiyek hebe didin cîgirê serokwezîrê Îraqê bo karûbarên enerjî Husên Şehristanî û berpirsên wezareta petrola Îraqê.

Mutesem Ekrem di hevpeyvîneke de ligel Rûdawê got: "Ez tiştekî di nav wezareta petrolê de dizanim, mixabin biraderên me yên Kurd, ku ew ji yê din hez nake û yek li dijî yê din e û her yek girêdayî aliyekî ye, çi agahiyên wan li ser meseleya petrolê hene li vir didin Şehristanî û berpirsên wezareta petrolê ya Îraqê."

Vî berpirsê Kurd yê wezareta petrolê herwiha got: "Daxuyaniyeke wezîrê samanên xwezayî yê Herêma Kurdistanê ku bi kurdî di malperekê de tê belavkirin; ew kes di cih de werdigirînin erebî û didin Şehristanî."

Di vî alî de qala mînakekê dike û dibêje: "Sala 2010ê wezîrê samanên xwezayî Aştî Hewramî daxuyaniyek dabû, di malpereke kurdî de belav bû û heya niha jî wek belge li cem min heye, Hewramî gotibû: Pêdiviya Herêma Kurdistanê bi berhemên petrola Bexdayê tune û ev daxuyanî jî gihişte destê Şehristanî, wî jî biryar da ku madem pêdiviya Herêma Kurdistanê bi berhemên petrola Bexdayê tune bila ji sedî 50ê pişka wan bê kêmkirin, wê demê jî meha Remezanê bû, gava birrîn li Herêma Kurdistanê krîz derket."



Wêne: Rûdaw

Ekrem dû re çûye cem wî û ew daye qinyatê ku berhema Bexdayê ji Herêma Kurdistanê re bişîne. Mutesem Ekrem ku ji sala 2003yê ve li wezareta petrolê ya Îraqê ye, dibêje ew di hundirê çend salên karkirina xwe de dibîne ku Şehristanî ne "dijminê gelê Kurd" e wek ku hinek Kurd behs dikin û "ger Kurd gotûbêjan pê re bikin wê bigihin encamekê."

# Yekemîn perestgeha Kurdên Zerdeştî li Stockholmê vedibe


Wêne: Rûdaw

**Stockholm (Rûdaw) -** Di roja Newrozê îsal de wê yekemîn perestgeha Kurdên Zerdeştî, ku ew bi xwe dibêjin "agirî", li Skandînavyayê deriyê xwe ji bawermendan re veke. Agirgeha Kurdên Zerdeştî li Swêdê, li taxekê bakûrê Stockholmê ye û ji bo vekirina fermî amadekarî tên kirin.

Li derve berf dibare û gellekî sar e, dengê çakûç û makîneyan ji jorek vala deng vedidin. Lê agirê li bin wêneyê Zerdeşt, Faravaharê Hurmuz (Ahura Mazda) û ala Kurdistanê dilê mirov germ dike. Endaz Hewizî bi serbilindî pirtûka xwe ya pîroz himbêz dike û li ber agir radiweste. Endaz Hewizî "asrawanê" vê perestgehê ye, ango yekemîn pîrê Zerdeştiyan li Swêdê ye. Ew dibêje ku ewê roja Newrozê ayîna xwe pêk bînin.

Endaz Hewizî 20 sal in li ser ola Zerdiştiyê hûr bûye û pile bi pile xwendiye, heta ku gihiştiye asta pîrîtiyê, ango asrawaniyê. Li gor wî, bawermendên Zerdeştiyê li Brîtanya, Swêd, Hindîstan û Başûr û Rojhilatê Kurdistanê gellek in, lê wek pîrê Zerdeştiyê yê Kurd ew tenê ye heta niha. Lewma Kurdên Zerdeştî daxwaz ji Endaz Hewizî kirine, daku bibe asrawanê wan. Tenê asrawan dikare ayînan û seremoniyên Zerdeştiyan birêve bibin. Di destpêkê de ew grûbek biçûk ya çar kesî bûn, niha tenê li Swêdê ew bûne 3000 kes, weke ku asrewan Endaz dibeje.

**Rûdaw: Gelo çima niha oleke kevin û mirî vedijînin?**

**Endaz Hewizî:** Pirsgirêkek me ya mezin heye. Heta niha perdeyek avêtibûne ser ziman û çanda kurdî. Çanda me ji me standine, ji me birine. Em kevintirîn gelê Mezopotamyayê ne, em ji çiyayên Zagrosê ne. Me dizanî ku em hertim hebûne, lê me nedizanî zimanê me ji ku hatiye, me nedizanî kîjan çanda me ye, kîjan dîroka me ye. Me nedizanî şahî û pîroziyên me çi bûn, ev hemû ji me re dûr bûbûn. Bi rêya vegerîna ola xwe, bi rêya xwendina pirtûka xwe ya pîroz Avesta, tê de zimanê me, edetên me hatine berhev kirin, ji bo nifşên ciwan, bi xwendin û hînbûna wan em ê bikarin nasnameya xwe peyda bikin, xwe nas bikin ku gelê Kurd bikare welatê xwe Kurdistanê ava bike.

**Gellek ziman û çand ji holê radibin. Bi saya globalîzmê û teknolojiyê her diçe hemû gel dibin wek hev, kinc û ziman dibin yek, daxwaz û pêdiviyên mirovan hema wek hev in, gelo pêwistiyek bi çand û olek kevin heye?**

Heta ez tiştekî derbarê xwe bi xwe de nizanibim, ez nikarim helwestekê ji bo tiştek din deynim. Em nabêjin em ê Kurdayetiyê şiyar bikin, em dibêjin em ê zanyarî û agahiyên ser Kurdayetiyê pêş ve bibin. Eger em xwe nasnekin, em kesek din jî nikarin nas bikin. Ola me olekî navnetewî ye, li gor asrewan. Em ê nîşanê zarokan bidin, daku mirovatiyê binirxînîn. Ev ol olek bê astengî ye, tê de helal, heram tune ye. Bingeha olê ser mejî ye, divê mirov bifikire û hilbijêre. Lewra navê olê, ola dilşa ye û ola dijwar e, ji ber ku hilbijartin dimîne li ser me mirovan. Kes nabêje "vê bike" an "vê neke", ev olekî wisa ye ku mirov pal dide xwe ku pêş de bibe. Eger mirov oldar be, divê mirov întellektuel be. Tu çiqasî zana bî, hilbijartina te jî çêtir dibe.

**Em nabêjin em ê Kurdayetiyê şiyar bikin, em dibêjin em ê zanyarî û agahiyên ser Kurdayetiyê pêş ve bibin.**



**Di hemû olan de pirsa herî girîng ji jiyanê bêtir, ka piştî mirinê çi tê serê mirov e. Gelo di ola Zerdeştiyê de biheşt û dojeh hene? Dema mirov gunehekî bike çi bi mirov tê?**

Pîrê Zerdeştî ji me re şîrove dike û dibêje hemû têgehên biheşt û dojehan di olên niha de, ji ola Zerdeştiyê derçûye. Ew dibêje ku dema mirov dimire, ruhê mirov di ser pirekê re derbas dibe, Pira Seplanêm. Misilman jê re dibêjin Pira Siradê. Ku mirov nebaşî kiribê, mirov kirêt e û ji pirê dikeve dojêhe. Ferqa dojeha Zerdeştiyan, ew wek ya Misilmanan germ û agir nîne. Germ û agir ji Kurdan re xweş e, pîroz e. Ji ber ku em ji herêmek çiyayî û sar in, biheşta me germ û ronî ye. Lê Dojeh binerd e, tarî ye û sar e.

**Mirov çawa dikare ola xwe biguherîne û bibe Zerdeştî?**

Di ola Zerdeştiyê te sê tişt hene ku bingeha baweriya Zerdeştiyê ne. Beden, can/ruh û Faravahar e. Bedena me, ruhê me û dilopek ji Xwedê Faravahar tên cem hev û mirov temam dikin. Ruh bedenê dide jiyandin, lê yê ku van herduyan tevdigerîne ew dilopa ji Xwedê ye. Yê ku me pêş dixe, dike rêya rast û ya nerast, ew dilop e. Lewra hejmara sê ji me re pîroz e. Ev hersê tê wateya "fikirandina baş/rast, kirinên baş/rast û axaftinên baş/rast". Di dema guhertina ola xwe de, em çarekê li pişta xwe diwerînin û bi xwendina Avestayê sê girêyan lê didin, wê demê em dibin Zerdeştî.

**Ayînên xwe bi çi rengî rêve dibin?**

Em rojên Çarşeman kom dibin, rêvebirê ayînê wê ji Avestayê bixwîne û şîrove bike. Lê herwiha em ê toreyên Zerdeştiyan vebêjin û herwiha hemû ayînên xwe bikşînin kamerayê û li ser malpera xwe biweşînîn ku hemû Kurd bikarin ayînê bişopînin. Du cejnên me yên mezin hene, Newroz, di 21ê Adarê de, ku çend rojên pîroz jî pê ve girêdayî ne, wek Çarşema Sor, ku çarşema dawî ya beriya Newrozê ye û ji me re pîroz e. Herwiha 13 rojên piştî Newrozê jî rojên ji me re girîng in ku jê re dibêjin Sêzdebeder. Cejna din ya mezin Mihrican e ku 25ê Kanûnê tê pîroz kirin. Ew roj rojbûna yek ji wan mezintirîn Xwedayê me Mehr/Mîtrayê ye. Di vê rojê de em ê sofraya heftsînî vekin. Hejmara 7 di hemû olan de pîroz e. Ji ber ku ew dem 7 rojger dihatin nasîn, melik 7 in, roj 7 in, 7 hêman in.

*Hevpeyvîn: Nesrîn Rojkan*

## Şirove



**Bihar**

**Taman Şakir**

Ji wextê ku Kurd û Ereb bûne bira, Kurd bi wê biratiyê pirr metelmayî ne û hewl dane çav li birayên xwe yên Ereb bikin, ola xwe guherandin û bi sedan sal in jî hewl didin çand û nasnameya xwe biguherin. Sûkên Kurdistanê bûne cihê firotina cube û ebeyên îmaratî, jinên me jî ji dêvla çarik û çarşevên rengîn bi cube û ebeyan dişibin tabloyeke reş. Ger ne ji serhildana bi rûmet a gelê Başûrê Kurdistanê bûna, niha min jî ev gotara xwe bi erebî dinivîsand. Yanî Ereban hertim bi çavê dijmin li Kurdan mêze kirine.

Ereb xelkê her welatekî erebî bin, Kurdan wek cûdaxwaz binav dikin û bi baweriya wan Kurdan beşek ji xaka Îraqê dagir kirine û dewleta kurdî li ser ava dikin.

Beşek ji Kurdên me ketine bin bandora şoreşên "Bihara Erebî-Bihara Îslamî" û bi baweriya wan divê em jî sîstem û desthilata Kurdistanê hilweşînin, bêyî liberçav girtina rewşa Kurdistanê û bandora dewletên birayên me yên misilman yên cîranên me, ku bi agir û hesin û çekên kîmyewî sedan sal in şerê me dikin, naxwazin ev ezmûna Kurdan parçên din ên Kurdistanê lixwe bigire, lê niha em bi xwe hewl didin nasnameya xwe tund bikin, bêyî ku rewşa jiyana xelkên welatên bihara Îslamî bixwînin.

Ciwanekî misrî nîvê jiyana xwe ligel paqlewa û seleteyê derbas dike û xewn bi xanî, villa, prado û land cruiser nabîne. Xewna wê yekê dibîne ku pereyên wî hebin di heftiyekê de kîloyek goşt bi 10 dolaran bikire, yan hîç nebe cejna xwe bê goşt derbas neke. Ew rejîmên zordest ên ku di encama derbeyên eskerî de dest danîn ser desthilatê xelk bê rûmet û birçî kirin divê bên guherandin. Li Misrê zêdetirîn rêjeya bêkariyê di navbera derçûyên zanîngehan de ye. Li Tunus û Morokoyê û piraniya welatên din heman siyaseta birçîkirin û bê rûmetkirina mirovan hatiye meşandin.

Jinên Misrê ji sibehê heya nîvê şevê kar dikin, bi dirêjiya hemû serdanên min ên dirêj bo Misrê, ji bilî rêjeyeke pir kêm, min jinek nedît parçeyek zêr pêve be, wek beşek ji jinên me ku mil û gerden û dest û zendên wan li camxaneya zêrkeran diçe, mêr cilûbergên tirkî yên herî biha lixwe dikin û otomobîlên nû dajon, salane çend caran diçin derve jî.

Xwenîşadanên 17 Sibatê jî çavlêkirineke deq bi deq a bihara erebî bû ku dû re bû bihara îslamî, rewşa Kurdistanê bêyî bihara erebî di payîzê de ye, lewra li herêmeke federe ya bindestê Îraq û gefa Îran û Tirkiyeyê bihar çavên xwe venake, her çavlêkirinek jî encamên xirab derdixe holê û çend ciwanên hejar dike gorî.

Kêmasiyên sîstema siyasî li Kurdistanê pirr in, edalet tune, gendeliya îdarî û darayî heye, lê belê ev nayê wateya ku em vê Kurdistanê wek berê lê bikin gava me nedikarî bêhna xwe bidin û bajarên me li gundên mezin diçûn û di Newrozê de jî me bi tirs aheng digerandin. Em hemû cudahiyeke di navbera duh û îro de dibînin, bila em hewl bidin kêmasiyan çareser bikin. Li gor hinek welatên din jiyana me pirr baştir û xweştir e ger halê hinek kesên welatên din bibînin Kurdistan pirr baş e.,

# Pirsgirêka kurd û pêşketina Tirkiyeyê bi hevre girêdayîne

**David Romano**



15ê Sibatê bîranîna 13 saliya girtina Serokê PKKê Abdullah Ocalan bû. Girtina wî pêwîst bû şerê çekdariyê PKKê dijî dewleta Tirk bi dawî anîbaya. Girtina Ocalan piştî çendîn operasyonên leşkerî û goşarên aborî pêkhat. Ev rê jî bo vê mebestê hat bikaranîn da PKK ji holê rabibe. Ji wê demê ve bo bi dawî anîna PKKê çendîn operasyonên leşkerî, goşarên aborî û planên siyasî hatine kirin. Di vê demê de operasyonên leşkerî li dijî her kesê ku bo PKKê keniya be jî, ligel şepêleke din a binçavkirinê destpêkirine, ev jî her bi mebesta ji holê rakirina PKKê ye.

Bêguman di çareserkirina nakokiyan de bikaranîna hêzê bo parastina dewletê û xurtkirina aboriyê roleke mezin dileyîze. Lê dîsa jî ti ji van wê Kurdên Tirkiyeyê bêdeng nekin. Kurdan bo maweyekê dirêj ji sala 1930yê heta 1990î nedikarîn li Tirkiyeyê weke Kurd biaxivin. Lê niha bêtiriya Kurdan pesnê rola PKKê didin ku nasname û dengek daye, herwiha dewleta Tirkiyeyê jî neçar kiriye ku wan nas bike li şûna ku berdewam be ser nasandina wan weke "Tirkên çiyayî" yan jî "rojhilatî" û "eşîret".

Ev şer bo bêtiriya Kurdên Tirkiyeyê û bi taybetî endamên PKKê şerekî dûr û dirêj, zehmet û xwînawî bû. Di endamê de jî wisa dixuya ku bêtiriya wan naxwazin ji çiyan dakevin û vegerin himber çend refomrên nepratîk ên siyasî yan soz û lêborînên nediyar û naskirinên şermîn bo karên xirab ên berê. Di heman demê de jî çiqas bêtir çalakvanên sivîl ên Kurd bên girtin, axaftinên PKKê yên derbarê pêwîstiya bi xebata çekdarî tên bawer kirin.

Lê heta niha hikûmeta Recep Tayyib Erdogan jî nikare tiştên ku PKK, alîgirên wê û BDP daxwaz dikin, pêşkêş bike. Bêtiriya xelkê Tirkiyeyê û bi taybetî yên ku mafê wanê dengdanê heye, heza wan ji hin tiştên weke "otonomiya demokratîk" nabe weke ya Kurdên Îraqê heye yan jî hin ji daxwaziyên BDPê. Ew van daxwaziyan weke pêngavên cudabûna Kurdan dinirxînin ku di bin navekî din de tên pêşkêşkirin. Herwiha hest dikin ku "şerê wan ê dijî terorê" gellekî dirêj, zehmet û xwînawî bûye. Dîsa ew qet van pêngavan qebûl nakin ku weke rûxaneke siyasî ne.

Bi kurtahî ev nakokî gihane qunaxa çeqînê. Eger yek bixwaze pêngavekê pêşve bavêje, divê vegere xalê pêşiyê ya navberkariyê ku ev jî ji cudakirina "xwestekan" ji "pêwîstiyan" pêktê. Bêguman Kurdên nasyonalîst bilindtirîn astê otonomiyê dixwazin yan jî desthilata nenavendî, nasname û rêz. Bêguman Tikiye hevwelatiyên guhdar, xwedî soz, guncayî û zehmetdîtî dixwaze, lê gelo di rastî de pêwîstiya van du aliyan bi çi heye? Da ku ev xalên ku îmkan nîne dest jê bê berdan, kêm bibin. Bi vê şêweyê îhtîmala vedîtina çareseriya van nakokiyan bo herdu aliyan wê derkeve pêş.

> Divê daxwaziya otonomiyê jî normal bê dîtin

Ez jî li gor nêrîna xwe bawer dikim ku dewleta Tirkiyeyê tenê yek tiştî dixwaze, ew jî: bi dawî anîna şer. Topbaran, êrîş û pevçûn eger bên rawestandin wê demê îmkan heye ku tiştên din di meydana siyasî de çareserî jê re bên dîtin. Kurd li aliyê din tenê yek tişt dixwazin, ev jî: azadiyeke rast a xweîfadekirin û hizirkirin e. Hemû ev yasayên weke yasayên "dijberîkirina terorê" û "şikandina hêzên leşkerî, hikûmet, serokwezîr, dadgeh û hemû tiştên din" û yasayên ku xelkê asteng dikin bi hinceta dijberîkirina yekperçeyiya xaka Tirkiyeyê yan propagandaya tudûntîjî, cudaxwaziya netewî û olî ku bo bêdengkirina xweîfadekirina Kurdan hatine bikaranîn, divê bên hilweşandin.

Ev yasa bo girtin û dadgehîkirina xelkê li ser "tawanên" ku di daxuyaniyên xwe yên siyasî de "zimanekî qedexekirî (kurdî) bikaranîne, rojane tên bikaranîn." Yan jî "nîşana pirsyarê xistine ser pênaseya nasnameya tirkî." Helbet ev yasa berî çend salan dijî wan kesên ku guhdariya muzîka kurdî jî dikirin yan semaya kurdî dikirin, dihat bikaranîn. Pêwîs te tenê ew boçû, weşan û rêxistinên ku bi şêweyekî eşkere propagandaya tundûtîjiyê dikin bên qedexekirin. Lê tiştên din divê normal bimînin heta bi daxwaza otonomî û cudaxwaziyê jî normal bimîne.

Piştre divê ev hemû gotûbêj di meydana siyasî de bên kirin weke çawa li Kanada, Belçîka û Siwîsre tên kirin, herwiha berê jî li Çekoslovakyayê jî hatin pêkanîn. Tirk wê sûdê ji vê yekê bibînin ku boçûna rast a Kurdan guhlê bibin, Kurd jî divê piştevaniya siyasî yan Tirkan bidest bînin da wan siyasetên ku ew dixwazin bên meşandin.

Mimkûn e ligel rawestiyana tundûtîjiyan û ferehkirina azadiyên siyasî, pêwîst bike ku mirov ji bo çareserkirina pirsgirêka Kurd li Tirkiyê xaleke din jî zêde bike, ku ew jî: derxistina lêborîneke giştî ya bêyî merc bo hemû gerîllayên ku çekên xwe dadinin. Civak jî li himber derxistina lêborîneke giştî bo PKKê divê lêborîneke giştî nîşan bide bo van kesên ku di salên 1990î de bo dewleta Tirkiyeyê karên xirab kirine, weke revandin, îşkencedan û çolkirina gundên Kurdan bi zorê.

Hin caran ji bo ku mirov pêşbikeve, divê mirov bi wê yekê razî be ku berê xwe nede borî.

# Pêxemberê rojnamevaniyê mir!

**Namo Ebdilla***

Rojnameya New York Times êdî nikare derbarê Rojhilata Navîn weke berê weşanê bike. New York Times êdî gellekî kêmtir zanyariyan derbarê vê navçeya aloz û bi pirsgirêk dide, ji ber ku Anthony Shadid miriye.

Êvara roja pêncşemê 16ê Sibata 2012yê dema ez ji zanîngehê vegeriyam ez çûm ser malpera New York Times ku nûçeyên dawî yên Rojhilata Navîn bixwînim, da bizanim ka xwepêşandanên Sûriyê gihane kîjan astê. Bi hêviya ku ez Masterpieceke din a Shadid bixwînim ku bi qaçaxî çûye Sûriyê, lê li şûna wê ji min re hat gotin ku baştirîn rojnamevanê serdema xwe Shadid, ji 43 salan bêtir nejiya.

Min ev tiştê ku min xwand bawernekir. Min xwest ez bi bilindiya dengê xwe biqîrînim û bêjim New York Times derewan dike: Antony Shadid piştî du dehsalên borî ji nîşandana cesaretê û amadeyî qurbanîdanê, bi allerjiya hespê û rebûyê namire. Lê çavên min diyarbû ku zû bawer kirin û hêdî hêdî dest bi barandina hêsuran kirin bo Shadid ku yek ji baştirîn heval û hevkarên min e ku ez ti carî ji bîr nakim. Herwiha ez şanaziyê jî dikim ku demekê min weke wergêr û peyamnêr ligel Shadid kar kiriye. Ez ê heta mirinê şanaziyê bi wî tek babetê bikim ku di bin navê me herduyan de hat weşandin. Shadid wergirê du xelatên Polîtzer bû bi sedema raporên wî yên derbarê Îraqê ku bo Washington Post nivisandibûn. Sernivîskarê berê yê New York Times got piştî sê car hewldanan wan Antony razîkirin ku bo rojnameya wan kar bike û razîkirina Antony weke "darbe" bi nav kir.

> **Anthony Shadid:**
> **"Namo, ez hêvîdar im, her tiştekî din ku tu bixwazî, ji min re bibêjî..."**



Antony Shadid yek ji mezintirîn kesatiyên dinyayê ye ku min naskirine. Ez nikarim basîtiya wî ji bîr bikim ku di germa raporkirina li Misr, Tunis û welatên din ên Erebî de jî dema xwe dida min ku nameyên piştevaniyê bo min binvîse û wan nivîsan bo min redakte bike ku bo min bûn alîkar; bi xêra wî ez li zanîngehek cîhanê ya baş hatim wergirtin. Hêşta ew masiya ku min û wî di êvariyeke dereng de li bajarê Zaxo xwar li bîra min e: "Namo, hêvîdarim her tiştekî din te xwest, ji min re bibêjî." Antony piştî her carekê ku alîkariya min dikir ev bo min di nivîsand.

Shadid di pêşiyê de bi rêya nivîsên xwe û paşî bi rêya hevaltiyê ez hînkirim ku rojnamevanî bi basîtî netenê kar e. Diyar bû ku Antony ji jiyana xwe bêtir ji rojnamevaniyê hez dikir, loma piştî Brîndarbûna bi gulleyan li Filistînê weke peyamnêrê şer dest ji karê xwe berneda. Wî di destpêka şerê Îraqê de xwe gihand cadeyên metirsîdarên Bexda, Necef û Mûsil. Piştî ku li Lîbiya ji aliyê hêzên Qezafî hat girtin ew destberdar nebû heta ku li dawiyê li Sûriyê di nava karê rojnamevanî de jiyana xwe ji dest da.

Shadid hêşta zû di 2003ê de û beriya hemû kesî ji min re got di dahatû de li Îraqa ku hikûmeta Bush soz da demokratiyê bi rêya çekan jê re bîne, xwediyên bêtirîn desthilatê wê melayên Şie yên xwediyên Emaman bin.

Di demekê de ku bêtiriya rojnamevanên biyanî yên din ji hotêlên Bexda nediçûn derve piştî şerê Îraqê, Antony bi sûdwergirtina ji bavê xwe yê bi regez Lubnanî û bi sûdwergirtina ji zimanê xwe yê Erebî diçû nîva taxên wêranên Bexda da çîrokên şer ên wisa ji me re bibîne ku hêşta kesî nedîtine. Diçû nivîsên li ser dîwaran dixwandin û hevdîtin ligel jinebî, êtîm, bavên ceger şewitiyên şer dikirin.

Sala borî ew siwarê matosikletê bû û careke din bi qaçaxî derbasî Sûriyê bû. Dema jê pirskirin ka wî çima wisa kir, got "ji xwe eger wisa nebûya nedihat gotin." Yek ji xweşiktirîn paragrafên Shadid ku berî çend salan nivîsandibû derbarê paşdekişîna leşkerên Amerîkayê ji bajarên Îraqê hêşta li bîra min e: "Li bajarê Bexda ku rojekê şanazî bi xwe dikir, paşdekişandin bi navçeyekê de ku brîna van şeran lê diyar e, ev şerên ku wan bi xwe kirin û ew bi xwe şahidên wan bûn. Li vir dingedingê dagîrkariyê li kêleka dengê nizmê anarişt û pista dest – ji- me bernede dengvedide. Her tişt her ji hesinên aliyên cadeyan heta bi wan nivîsên ser rêyan ku dibêjin xwedê ligel we be, ev gilêşê li ser rêyên piyadeyên yên li aliyên cadeyan kombûye ser hev, gomên avê û avên mend, hemû riştî û têketî dixuyên. Lê bi kêmanî hêşta rêyên piyadeyan nehatine rûxandin."

Tevî ku di îngilîzî de di dawiya rojnamevaniyê de "îzm" heye, lê rojnamevanî ne îdeolojî ye, weke bêtiriya zaraveyên din e ku dawiya wan "îzm" heye. Mimkûn e ew ol be û kesên weke Antony bi şêweyekî dînîtî jê bawer bikin. Heftiya borî pêxemberê vê serdema rojnamevaniyê mir.

** Namo Ebdilla xwendekarê masterê ye di warê rojnamevanî de li Zanîngeha Kolombia li New Yorkê.*

# Razana kêm sîstema parêzvaniyê tevlihev dike

» Nerazan û razana perçe perçe dibin sedemê nexweşiyan. Kêm razan dibe sedemê qelsbûna sîstema parastina laşê mirov.



**Rûdaw -** Nerazana pêwîst mimkûn e bibe sedema daketina sîstema parêzvaniya laşê mirovan û wan rastî nexweşiyan bîne.

Nerazan û razana perçe perçe mimkûn e nexweşiyan bi xwe re bîne. Lêkoleran eşkere kirin ku demjimêra bayolojî (tiştekî tradisyon e û razanê organîze dike) asta van bermayiyên ku li sîstema parêzvaniya laşê mirovan miqate dibe, kontrol dike.

Zanyarên Zanîngeha Yale bi rêya ceribandinekê karîn têkiliya bermayiya TLR-9 bi sîstema parêzvaniya di mêjî de ronî bikin, dema bermayiyeke çalak dikare bi başî bersîva bakterî û vîrusan bide. Ango razana perçe perçe ku gera nivistinê qut dike, wisa li mirovan dike ku bêtir gefa nexweşiyan li ser wan hebe.

Profesor Erol Fikrig dibêje, "xelk bi şêweyeke giştî dizanin ku dema xewa wan bi şêweyê perçe perçe yan bêzarkirî be, ev bêtir nîşanê wê yekê ye ku ew bikevin nexweşiyan."

Fikrig herwiha pêşniyaz kiriye ku li ser bandora ronahî û dengedenga di dema razanê de û têkiliya vê yekê bi nexweşketinê lêkolînek bê kirin. Herwiha şêweyê razana van kesên nexweş, hebûna ronahiya xurt û dengedengê jî bê ronî kirin ka li ser van çiqas bandora wê heye.

Fikrig dibêje, "girîng e bê zanîn ka dengedeng û ronahiya zêde li ser sîstema parêzvaniya laşê mirov çawa bandorê dike."

# Alkol ji AIDS bêtir xelkê dikuje

Lêkolîneke Brîtanî eşkere dike ku salane nêzîkî 2 milyon û 500 hezar kes bi sedema vexwarina alkolê dimirin. Her li gor vê lêkolînê vexwarina alkolê bi serê xwe ji nexweşiya AIDSê jî bêtir xelkê dikuje. Loma jî pêwîst e bo danîna sînorekî bo van berheman lihevhatineke navnetewî bê pêkanîn. Ev lêkolîn li Zanîngeha Oxford a Brîtanyayê hatiye kirin û li gor vê lêkolînê rêjeya mirinên bi sedemên hînbûna vexwarina alkolê ji mirinên bi sedema AIDSê bêtir e.

Vexwarina alkolê gellek mirovan rastî rewşa hînbûn û hogiriya van vexwarinan dike û piştre jî mirov nikarin jê dûrkevin. Alkol herwiha gefê li jiyana mirovan jî dike.

Diyarbûna amarên bi tirs û lêkolîna Zanîngeha Oxfordê, lêkoler xistine rewşeke nîgeraniyê û ji Rêxistina Tendirustî ya Navnetewî xwestine ku mirov û welatan pêgîrî dokumentekî yasayî bike.

Lêkoler dixwazin ku Rêxistina Tendirustî bi rêya avakirina lihevhatineke navnetewî, ligel van welatan lêpirsînê bike ku vexwarinên alkolîk tê de bi şêweyekî xirab tên bikaranîn, herwiha li wan kesên ku bo vexwarina alkolê temenên wan biçûk e rê jî nagirin.




## Xaçepirs

**Çeperast:** 1 - Xefika çûkan, pê çûk tên girtin – Kesên ji Bamernê – Du tîpên gotina "strî". 2- Malbatên mezin, êl – Bi ahengê ve girêdayî, tiştên bi aheng. 3- Şirovekirin, nirxandin – Destnîşankirina kesê duyem (berepaş). 4- Demsalek, demsala piştî buharê – Seet, demjimêr. 5- Sê tîpên gotina "reşîn" – Nehat, li paş ma, nayê. 6- Notayek (berepaş) – Navekî mêran. 7- Perîşan, derbeder, bêzar – Damar, reh, kok. 8- Sipêde, pêşeroj, serê sibê – Mekan, war, mesken. 9- Welatek Ereban – Ajansa fermî ya dewleta Îranê. 10- Xwarinên bi şekir, tiştên şîrîn (berepaş).

**Serejêr:** 1- Pevçûn, lihevxistin – Bejayî, şevîn. 2- Dûrî kerema hazir, ji derveyî civatê (berepaş) – Eslîn, bingehîn. 3- Pincarek xwarinê, qurmê pincar – Paytextê Îtalyayê. 4- Kesên pêşketî, pêşketîxwaz (berepaş) – Notayek (berepaş). 5- Bi "lek" ve girêdayî, tiştên lek û plastîk – Navekî mêran. 6- Pêvek û girêdanka gotinan (bi taybet Behdînî bi kar tînin) – Cîhgirê muxtar, serbest. 7- Kesên ji Azerbaycanê. 8- Ava ku ji lebatên cinsî derdikeve, ava cinsiyetê – Hacet û amûrek muzîkê (berepaş). 9- Navekî jinan (berepaş). 10- Xwedayekî Sumeran – Nebatên hişkkirî, dermanên xwarinê (berepaş). 11- Enerjîya dijwar, dermanê ku mirov pê dimire (berepaş). 12- Na, nexêr, nabe. 13- Bîranîn, serpêhatî (berepaş). 15- Serok, serwer (berepaş). 16- Maddeyek teqandinê, teqemenîyek.

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | | | | | | ■ | | | | | | | | ■ | | |
| 2 | | | | | | | ■ | | ■ | | | | | | | |
| 3 | | | | | | | | | | ■ | | ■ | | ■ | | |
| 4 | ■ | | | | | | ■ | | | | | | | | | ■ |
| 5 | | ■ | | | | ■ | | ■ | | | | | | | | |
| 6 | | | ■ | | ■ | | | | | | | | | | | |
| 7 | | | | | | | | ■ | | | | | | | | |
| 8 | | | | ■ | | | | | | | | | | | | |
| 9 | | | | | | ■ | | | | | | | | | | |
| 10 | | | | | | | ■ | | ■ | | | | | | | |

### Bersivên hejmara 134

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | Ç | E | L | L | O | ■ | Ş | E | R | B | E | T | ■ | A | S | T |
| 2 | A | L | Î | ■ | S | R | Ê | H | ■ | E | Z | W | E | R | ■ | Û |
| 3 | R | E | K | A | M | ■ | W | ■ | E | R | D | E | L | A | N | ■ |
| 4 | E | W | ■ | V | A | R | I | K | ■ | M | A | S | Î | V | A | N |
| 5 | N | Î | Ş | A | N | ■ | R | E | W | A | | | | | | |
| 6 | Û | ■ | Î | D | ■ | E | M | S | A | L | | | | | | |
| 7 | S | E | R | A | N | S | E | R | ■ | Î | | | | | | |
| 8 | Î | R | A | N | Î | ■ | N | A | D | ■ | | | | | | |
| 9 | ■ | O | N | Î | M | O | D | ■ | R | A | | | | | | |
| 10 | A | S | Î | ■ | A | S | Î | M | A | N | | | | | | |

Rojbûn an jî şahiya te ye û tu jî dixwazî wêneyê xwe li vir bibînî? Ji me re bişîn: info@rudaw.eu

# Spider-Man jî lehengek e




Leheng di 30.05.2007ê de li Almanyayê ji dayîk bûye. Hûn dizanin wateya navê Leheng çi ye? Leheng kesekî sereke ye di çîrokekê de. Bo mînak hûn James Bond nas dikin? Ew di fîlman de hertim rola sereke dilîze, yanî ew lehengê wan fîlman e. Anjî Spider-Man, ew jî di fîlmên karton de leheng e. Futbolvanekî serketî jî dikare lehengê tîma xwe be. Gelo dema Leheng mezin bû, ew ê jî bibe lehengek? Kî dizane, rêya wî vekiriye, ji ber ku ew zîrek e. Leheng niha diçe baxçeyê zarokan û ew gelekî ji hevalên xwe hez dike. Resimandina wêneyan zêde kêfa Leheng tîne.

**Hejmaran bigihîne hev. Wêneyê ku derdikeve tu nas dikî?**




## 9 cûdabûnan di navbera herdu wêneyan de bibîne





## Pêkenok



Rojekê ji rojan du çûk li ser têla karebayê (elektrîkê) rûniştibûn û ji hev re behsa dinyayê dikirin. Ji nişka ve firokeyeke cengê, ku agir ji dûvika wê diçû, di ber herdu çûkan re derbas bû. Yekî ji wan çûkan matmayî got: "Wey li minê, ev çiqasî bilez difirê!" Çûkê din jê re bersiv da û got: "Eger rojekê dûvikê te jî wiha agir bigre, tu yê jî wiha bilez bifirî."




Amedekirina rûpela zarokan: Sevda Şafîk